Bidestveanîna Mafên Netewî
Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal De

# Agirî

Hejmar: 167
22'ê Îlona 2011
Buha: 150 Tûmen

**Di taybetnameya vê hejmarê de:**

-Peyama Deftera Siyasî a PDKÎ ku ji aliyê birêz Mistefa Hicrî ve hat pêşkêş kirin.

-Hevpeyvîn bi çend heval û hevçeperên Dr. Seîd Şerefkendî re

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne    www.kurdistanmedia.com/kurdî

**Serkomarê berê yê** Efxanistanê ji aliyê Taliban ve hat terorkirin

R: 2

**Di Îranê de îdama girtiyan** bê navber berdewam e li 3 hefteyan 50 kes

R: 2

**Peyama Dr.Mehmûd Usman,** bi munasibeta 19'mîn salvegera terora dr. Seîd Şerefkendî de

R: 2

Mistefa Hicrî:

## Şerefkendî sadiq bû di gel rêbaz, berpirsayetî û heval û hevçeperên xwe

Îsal jî wek salên berê bona rêz û hurmet girtina ji rêberê tu car nemir ê PDKÎ Dr. Sadiq Şerefkendî li binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ û derdora wê û her weha li dervey welat jî gellek rê û resm birêve çûn. Li navxwe ye Kurdistana Îranê de jî endam û alîgirên PDKÎ bi nivîsandina dirûşman li ser der û dîwaran û her weha bilavkirina traktên hizbî û wêneyê rêberên şehîd rêz û hurmet ji wî rêberê şehîd û hevalên wî girtin.




Birêz Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ, di 19'mîn salvegera terora Mîkonosê de li rê û resma bi bîranîna wan şehîdan de peyamek pêşkêş kir. Di beşek ji axavitina xwe de îşare bi vê yekê kir ku " Roja şehîdkirina Dr. Sadiq û hevalên wî ji bo me wek Kurd bi giştî û PDKÎ bi taybetî, rojek e û nayê jibîrkirin.Em her sal di vê rojê de li dewra hev kom dibin da ku emegdariya xwe bi rê û şopa wan şehîdan nîşan bidin".

Navbirî di beşek din ji axavtina xwe de qala kesayetiya Dr. Sadiq kir û ragehand ku Dr. Sadiq tenê bi nav Sadiq nebû, belkî bi wateya tewaw ya kesayetiya xwe Sadiq bû.

Ew kesekî sadiq bû di gel kar û berpirsayetiya xwe û di gel rêbaza xwe. Ew sadiq bû tevî hevalên xwe ên zehmetkêş.

### Serkunsûlê DYA'ê seredana Deftera Siyasî a PDKÎ kir

Pêşnîvroya roja Şemî, 18'ê Îlona 2011'an, heyetek Konsûlxaneya Dewletên Yekbûyî ên Amerîkayê li Hewlêrê, bi serperestiya "Alêks Laskarîs"ê Serkonsûl, seredana Deftera Siyasî a PDK Îranê kirin û ji aliyê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û hejmarek ji endamên rêberî ve hatin pêşwazîkirin.

R: 2 →



### Şeş filmsaz bûne goriyê teswiye hesaba rejîmê li gel BBC

Şeş filmsaz bi tometa alîkariya bi BBC'ê re ji aliyê hêzên ewlehî ên rejîma Îranê ve hatin destbiser kirin.



Wezareta Îtilaata rejîma Îranê bi derkirina daxuyaniyekê girtina wan erê kir û ragehand ku wan bi awayekî nihênî kar bo vê dezgeha (bi gotina wan dezgeha sîxoriya bîhaniyan) kirine. Di daxuyaniyê de hatiye ku hinek kesên din jî ku bi awayê nihênî ji bo BBC'ê kar dikin, li jêr şopa qezayî de ne. BBC'ê jî di vî warî de ragehand ku kesên hatine girtin, kesên serbixwe ne û bi tu awayî ji BBC'ê re kar nekirine. Nûçeya girtina wan şeş kesan di demekê de hate ragehandin ku BBC'ê fîlmek belgeyî li ser jiyana Xamineyî bilav kir.



**Mertala dijî mûşekî a** Nato û gefên rejîma Îranê

Selîm Zencîrî

Piştî heyamekê nîqaş û dan û standin li ser cihgîrkirina sîstema radarî û mertala dijî mûşekî a Nato...

R: 4



**Rêberê sozdar bi** mamostayê xwe

Azad Kurdî

Hêj 3 sal bi ser bûyera şehîd û terokirina rêberê navdar ê Kurd Dr. Ebdulrehman Qasimlo û hevalên wî ji aliyê terorîstên ...

R: 7



**Xwekujî, encama** rewşa xirab a civakî

Sadiq Vehdanî

Xwekujî, diyardeyek giştî û cîhanî ye ku kêm û zêde di hemû civakên cîhanê heye. Tevî...

R: 9



**Jiyan û serpêhatiya** Yilmaz Guney

A: Arif Velezî

Yilmaz Guney di sala 1937'an de li gundek Edenêyê bi navê Yenîceyê hate dine, û yek ji 7 zarokên malbateke karker ê Kurd bû...

R: 10

Hejmar 167, 22'ê Îlona 2011

## Peyama Dr. Mehmûd Usman bi hinceta 19'mîn salvegera terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî

Dr. Mehmûd Usman, endamê parlemana Îraqê û kesatiyê serbixwe ê kurd, bi boneya 19'mîn salvegera terror kirina dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî bi destê rejîma Komara Îslamî a Îranê, peyamek weşand ku eva jî deqa wê ye:



Şeva 17-09-1992-an, Sadiq Şerefkendî, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û du kadrên pêşkevtî ên vê Partiyê bo beşdarîkirin di civîna Sosyal Enternaşnalê çûbûne Berlîna Almanê, pêka belgeyên eşkerekirî ji aliyê dadgeha Almanê ve, ew ji aliyê rejîma Tehranê ve hatin terror û şehîdkirin.

Şehîdkirina wan kesayetiyan, piştî şehîdkirina Dr. Qasimlo derbek pir giran bû ji peykerê Partiya Demokrat û bizava gelê Kurd li Rojhilata Kurdistanê û gelê Kurd bi giştî. Ev bûyera dilêş diviya refên Kurdan di Rojhilatê Kurdistanê di çarçoveya xebata netewî û mafê diyarîkirina çarenivîsê de zêdetir rêk bixe bo berbirûbûn ligel ew metirsiyên ku rastî wan tên.

## Sergotar

### Kesabetek li jêr navê rabûna îslamî

**Selîm Zencîrî**

"Rabûna îslamî" kincek îdeolojîk û çewaşekarane ye ku Komara Îslamî a Îranê ji bo serhildan û guhertinên demokrasîxwaz ên rojhilata navîn û bakûrê Afrîqayê dirûye û dixwaze bi model û şêwaza xwe li bejna wê bike. Eve jî li halekê de ye ku azadî, demokrasî û meseleyên aborî, sedema rabûnê û çarçoveya durûşmên şoreşvanên wan welatan pêk tîne; Him li Tûnis, Misr, Lîbiyê û him jî li Sûriyeya hevalbendê rejîmê de ku niha li jêr hovêtiyên nîzama Esed de can didin, azadî û maf hawar û banga hertimî a wan bûye. Helbet renge li nava wan hêzên beşdarî şoreşan de, hin gurûp jî hebin ku durûşmên îslamî qîrandibin, lê nasname û şonasa wan serhildanan ku îro bi buhara erebî tê nas kirin, tam siyasî, mafxwazane û bi armanca dawîanîn bi zulm û zora dîktator û cînayetkarên desthilatdar e.

Navkirina "Rabûna Îslamî" ji hêla rejîma Îranê ve armancdar e. Ew dixwazin hêl û mesîra wan tevgeran bi dirûşmên dijî rojavayî berxwar û siwarê pêlên wê bibin. Helbet ev hewildayîn û "tezahur"a rêberên rejîmê ne ji ber rizgariya xelkê ji nîrê zordariyê, belkî desttêwerdan e bona tesîr dayîn li ser diyarîkirina metodên hikûmetên piştî hiloşîna dîktatoran û qorixkirina destkevtan e. Çunku ew welat niha li qonaxa borîn "guzar"ê de ne û wekî erdekê ye ku her kes tovê xwe lê biçîne, lê berhema wê girîng e.

Paşan jî Komara Îslamî gelek nîgeranê van guhertinan e ku hêdî hêdî hemû deverê dadigre, nemaze riya vegerê bo Sûriyeya hevalbendê Îranê nehiştiye, lewma Îran nîgeran e ku ew sonamî û bahoza dijî dîktatoran rû ji wê jî bike; bi taybet ditirse ku ger rabûnek hevşêwe li Îranê de pêk were û ew bixwazin tepeser bikin, renge rojava û Natoyê li hemberî xwe de bibînin( şibî Lîbiyê).

Li çarçoveya tesîrdayîna ser wan tevgeran û mifah standina xirab ji wan bûyeran, Komara Îslamî konferansek çend rojî bi navê "rabûna Îslamî" li Îranê lidar xist ku hejmarek zaf ji hêz û kesatiyên îslamî ên nizîkê xwe li welatên cur bi cur de beşdar kiribûn, daku siyaseta ajawegêrane û alozafir ên xwe zêdetir pêş bixe.

Hevdem li gel birêveçûna vê konferansê, hejmarek ji nûner û çalakên sunî meseb ên Îranê li nameyekê de bo Xamineyî, nerazîbûna xwe bi nisbet siyasetên rejîmê nîşan dane û daxwaza dawî anîna bi sê dehsal ferq û cudahiyên mesebî û siyasî ji aliyê hikûmetê li dijî suniyan kirine. Wan daye zanîn: **hikûmetek ku îzna çêkirina mizgeftê û nimêja cemaet li paytexta rejîmê yan dayîka cîhana îslamê nade suniyan, çavan dikare bibe ulgû û berjeng ji bo welatên sunî meseb?**

Gelo ew newekhevî, ferq û cudahî, girtin û tometbar kirin heya kengê?

Lê berevajî îdeayên rejîmê, gelên Sûriyê, Misr, Tûnis, Lîbî û ...hwd, gelek ji wê hişyartir in ku bikewne telikê û şoreş û destkevtên xwe bi hêsanî bispêrne hêzên tarîperest ên hevşêwe û hevpeymanên Komara Îslamî. Lewma ew dukan û bazara ku Xamineyî û rejîma wî li jêr navê "Rabûna Îslamî" de vekirine, kirryar û kesabetek nabe xincî şikest û tûşbûna bi pêlên demokrasîxwaziyê re.

Doma nûçeya

### Serkunsûlê DYA'ê seredana Deftera Siaysî a PDKÎ kir

Li destpêkê de Mistefa Hicrî" basek li ser rewşa siyasî a deverê, Îran û Kurdistanê kir û siyasetên tepeserkarane, givaşa rejîmê li hember civatên azadîxwaz û çalakên mafê mirovan li Îranê, herweha ev kirîza ku rastî rejîmê di asta navxweyî û navnetewî de hatiye, kir û li ser berdewamiya xebata gelên Îranê û gelê Kurd û hêzên Siyasî û pêşkevtinxwaz ên Îranê de, bo hiloşandina rejîma dîktator a Îranê û anîne serkar a hikûmetek demokratîk û federal, pêdagirî kir.

Dûre "Laskarîs" tevî nîşandana keyfxweşiya xwe ji vê seredanê û pêdagirî li ser bihêzkirina van pêwendiyan kir ku PDK Îranê weke partiyek berpirs di asta bizava Kurd û tevgera demokrasîxwazî a xelkê Îranê de rolek berbiçav heye û hêvî jî xwast ku xebata azadîxwazane a gelên deverê bandorek berbiçav li ser gihîştina gelên Îranê bi mafên xwe ên rewa û cihgîrbûna demokrasiyê di Îranê hebe. Di vê pêwendiyê de guhertinên "Bihara Erebî" bi qezancê pêşveçûna vê piroseyê zanî û di wan guhertinan de jî amaje bi serhildana tex û qatên xelkê li welatê Sûriyê kir û ragihand: Serkevtina tevgera xelkê di wî welatî de dikare paşekêşî bi siyasetên destêwerdana welatên piştevanên terorîzmê bike.

## Turkiyê ultîmatom da YE'ê

**Beşîr Atalay, Cihgirê Serok Wezîrê Turkiyê, di sefera xwe ya Qibrisê de dijkiryarek tund li hemberî biryara lêgerîna neftê li behra Medîterane de ji xwe nîşan da.**

Piştî vê ku Qibrisa Başûr ragehand ku wê dest bi karê lêgerîna neftê di Behra Medîteranê de bike, Beşîr Atalay, helwestek tund ji xwe nîşan da û ragehand ku biryarek bi vî awayî girêdayî bi kirîz û arêşeya çend rojên borî di navbera Turkiye û Îsraîlê de ye.

Wî got: "Hekî gotûbêjên aştiyê di vê giravê de birêve neçin, û YE' ê serkomariya devreyî a Qibrisê bide Qibrisa Başûr, dê aloziyek tewaw di navbera Turkiyê û YE'ê de derkeve holê, û emê têkiliyên xwe bi wan re bidin sekinandin.

Qibris ku beşa bakûra wê ji aliyê dewleta Turkiyê û beşa başûr jî ji aliyê Yûnanê ve tê îdare kirin, piştî aloziya ku di navera Turkiye û Îsraîlê de pêk hat wek mijara herî nû ya cihê behs û gengeşê di asta dîplomatîk ya dewleta Erdoxan de tê hesibandin.

Hêjayî basê ye ku Qibris di sala 1960' î de serxwebûna xwe ji Birîtanyayê wergirt û ji sala 1964'an ve Hêzên Aştîparêz ên NY, li wir bi cih bûne. Di Sala 1974'an de bi êrîşa artêşa Turkiyê bo ser bakûra wê giravê, Qibris bi ser du beşan de hat parvekirin.

## Serkomarê berê yê Efxanistanê hat teror kirin,

### Talîban ew teror girte stûyê xwe

Burhanedîn Rebanî, Serokkomarê berê yê Efxanistanê û Serokê Şêwra Bilind a Aştiyê li wî welatî de, li bûyerek terorîstî a li mala xwe de canê xwe ji dest da. Teror li demekê de hat encamdayîn ku ew li mala xwe de mijûlê got û bêja li gel du nûnerên rêxistina terorîstî a Talîban bûye.

Pêka çavkaniyan, yek ji wan du kesan bombeyek li bin şaşika xwe de veşartibû, li encama teqînê de Rebanî û 5 kesên din demildest jiyana xwe jidest dan.

Bûyera han li nizîk balyozxaneya Amerîka rû daye. Rebanî herweha rêberiya rêxistina îslamî a Efxanistanê li stû de bû ku Ehmed Şah Mesûd jî ji endamên wê bûye ku ew jî li sala 2000'î de ji hêla Talîban ve hat teror kirin.



## Di Îranê de îdama girtiyan bê navber berdewam e



Ew girtiyên ku ji girtîgeha Qizil Hesarê bo Goherdeşta Kerecê tên veguhastin, bi awayê nihênî û bi kom tên bidarvekirin

Li gorî nûçeyan, roja 28'ê Xermananê ew girtiyên ku ji girtîgeha Qizil Hesarê ve bo girtîgeha Goherdeşta Kerecê hatibûn veguhastin bi hevre û bi awayê nihênî hatin bidarvekirin. Roja 27'ê Xermananê girûpek deh kesî bo Goherdeşta Kerecê hatin veguhastin ku di nav wan de çar kes hatin îdamkirin û 6 kes jî bo cihek nediyar veguhastin.

Çalakên mafê mirovan ragehandin ku tenê li rojên 27 û 28'ê Xermananê de li ser hev 37 kes li girtîgeha Êvîn û Goherdeşta Kerecê de hatin bidar vekirin.

# 10 sal piştî 11 Septembrê



**Ebdulla Hicab**

Sal pir zû derbas dibin. Hê gurî u alavên ku roja 11.09.2011 ji Gunbetên Cêviye New York radibûn li ber çavên me ne. Renge bas û nîqaşên di mediyayê de û encamên şerên ku bi hêceta wê bûyerê dest pê kirin, bûyer hê di rojeva cîhanê de ragirtibe. An gelo dîrok her weke caran bi hemda xwe dimeşe û ewa temene ku bilez diçe. Lê her çi be, ya rast ewe ku 11'ê Septembrê cîhan ji hin aliyan ve guhert. Paşhejên li pey erdheja wê rojê hê Rojhilata Navîn dihejînin û babelîska ku ji ber herifîna Gunbetên Cêvî rabûbû hê neketiye.

Bûyera 11'ê Septemberê, di gel ku ji bo xelkê Amerîka karesatek mezin bû, lê karîgeriya herî zêde li ser Rojhilata Navîn danî. Bo cara yekê Amerîka xiste nava şerê bi rêkxistinên tundajo re ku dînê Îslamê weke emraz ji bo gehîştina armancên xwe yên siyasî bi kar tînin.

Di asta cîhanî de şêweya hevpeymanî û hevkariyê guherî, tengasî û astengiyên nû derxistin û nîşan da ku şikandina tevger an rêjîmekê bi maneya serketinê nîne û serketin bi ser sîstemek dîktator de xweserî xwe ewlekarî, azadî û vebûnê nayîne. Îro 10 sal piştî bûyera 11' Septembrê, cîhan hê ewle nîne, terorîzm nehatiye binebir kirin û şerê ku bi wê hêcetê û bi navê dijberiya bi terorê re dest pê kir hê negehîştiye encamê.

Eger yekem encamên bûyera 11'ê Septembrê, şerê Amerîkayê li Rojhilata Navîn be ku bû hegera şikestin û tevçûna her du rejîmên Taliban li Efxanistan û Sedam Husên li Êraqê, encamên piştre ew pêla nû ya serhildanan bû ku niha li welatên Erebî di rojevê de ye. Rêjîmên Tûnis, Misir û Yemen ku êdî niha ne kêrî Amerîkayê dihatin û ne jî li bal gelê xwe buhayek wan hebû, weke pûşê ber bayê payîzê çûn û xwe negirtin.

Qezafî, Lîbiya da kawil kirin û xwe xuşikandiye binê erdê. Dinya li Beşar Esed hatiye hev û nizane ka kengê wê berka wî li bin lingan bê kişandin. Rejîmên dine welatên Erebî soza reforman didin heya xwe ji bayê serhildanan rizgar bikin. Li derveyî welatên Erebî, Pakistan weke pendava li ber teqînê ye, şelê Xameneyî ketiye teşkan ka kengê wê dor bigehe wî.

Bi kurtî hemû gelên Rojhilata Navîn amadey serhildanê ne û her dem îmkan heye ku pêlên nûye serhildanan bi rê bikevin.

Ji aliyek din ve bûyerên Rojhilta Navîn nîşan dan ku aştî û aramiya hemû cîhanê bi hev re girêdaiye. Her çend agirê alozî û nearamiyan dûr be, lê dûyê wî agirî dikare here çavên her kesî. Bi wê yekê ve girêdayî, nirx û pîvanên mirovatiyê jî hevpar û cîhanî ne. Bi wê manayê ku bi xurt kirina nirxên hevbeşe mirovatiyê û pêşve birina demokrasî û mafên mirovan, riya aramî û aştiya cîhanî vedibe û gel û welat dikarin bi hev re di nava aştî û azadiyê de bijîn. Lewma bi guhertinên heremê re tevgera demokrasîxwaz hêviyek nû standiye.

Lê di gel wan guhertinan jî, herêma Rojhilata Navîn hê pêgavek cidî ber bi demokrasî û çareserkirina pisgirêkên xwe yên bingehîne weke kêşeyên siyasî û neteweyî, demokrasî, binpêkirina mafên neteweyî, belengazî, bêkarî û bêhêvîtiya lawan nerakiriye.

Pirsgirêkên serekeye herêmê hê weke xwe mane û di hin waran de karîgeriya aloziyên niha bûye heger ku civak ber bi paşve gavan bavên û di hin herêman de dubare bizivirin ser pêwendiyên eşîrî û tayifeyî.

Dubare derket ku şerê li hember dîktatoran û serhildanên gelan bi tenê dikarin rêjîmên dîktator ji nav rakin. Ne zelale ka wê piştre rê ji ber çi vebe û wê çi bi serê gelên heremê bê. Lewma hê dudilî û guman heye ka wê li encama serhildanên welatê Erebî herêma Rojhilata Navîn ber bi ku ve here. Ew yek ji bo aştiya heremê û ewlekariya hemû gelan pir girîng e. Bi taybet ji ber ku tirsa xurtbûna bingeha tundajoyî û pêlek nû ya dijberiya navbera gelan dikare rê ji ber bûyerên nexwestî veke.

Ew mijar erkek exlaqî û siyasî dixe ser milê hêzên xwedî deselat di asta îro ya cîhanê de. Bi taybet Dewletên Yekgirtye Amerîka li hember gelan û tevgerên demokrasîxwaze Rojhilata Navîn erkek girîng heye, her nebe ji bo sererastkirina wan kêmasî û giriftariyên ku bi xwe sebebkarê peydabûna wan bû. Beşek ji astengî, arîşe û tengezariyên ku Amerîkayê piştî ragehandina şerê bi terorê re xuliqandin hem ji DYA bi xwe re û hem ji herêma Rojhilata Navîn re bûne serêşiyek mezin. Hin ji wan arîşeyan ev in:

- Xurtkirina Îranê di warên siyasî, leşkerî û abûrî de bi riya tevşikandina du dijberên xwedî bandore weke Sedam Husen û tevgera Taliban. Bi awayekê ku destên Qerargahên girêdayî Sipaha Pasdaran li hemû Îraq, Başûrê Kurdistan, Efxanistan û gelek deverên din vekiriye ku bi navê avedanî û pirojeyên abûrî pilan û bernameyên xwe yên stratêjîk bibine pêş.
-
- Nedana baweriyê bi gelan û tevgerên azadîxwaz. Bi taybet siyaseta Amerîka ya li hember gelê Kurd pirsgirêkên cidî derdixe. Ji ber ku Amerîka hê nêzîkbûnek siyasî bi pirsa Kurd weke pirsa neteweyek perçekirî û xwedî mafê neteweyî nîşan nedaye. Danûstandinên Amerîka bi Hikûmeta Herêma Başûrê Kurdistanê jî pitir di çarçoveya parastina ewlekariya Îraqê û xurt kirina sîstemek navendî li Îraqê diçe pêş.
- Goşegîr kirina rêkxistinên demokrasîxwaz û îlmanî, di demekê de ku riya pêşveçûna rêkxistinên alozkar, paşvero û tundajo vekiriye.
- Paşguh xistina mijarên girînge weke demokrasî û mafê mirov weke pîvanên neguhere hevbeşe mirovatiyê.
- Xurtkirina pêwendiyên pêş dema bi dewletbûn û vebûna siyasî, weke pêwendiyên eşîrî û tayfeyî weke ku li piraniya welatên Erebî, Efxanistan û li pir deverên Kurdistanê xuya dike.

Bi li ber çav giritina wan mijaran, wê ji niha û pê ve ber bi aqilane be ku ji bo binbirkirina tundajotiyê û avakirina sîstemên nû ku hevkarî, aramî û aştiyê bikin bingeha kar û siyaseta xwe, hêzên xwedî desthilat guhdariya dengê gelan bikin.

Demokrasî û bi wê ve jî girêdayî aştî û tenahî bi riya çekê û bi destê gencên bê ezmûne ku heya ber guhan di çek û rextan de pêçayî ne, nayê tu deran. Ji bo pêşîgirtin ji dubarebûna dîrokê û rêzgirtin ji hemû qurbaniyên ku di nava şer û tundûtîjiya ji ber tundajoyî û kevneparêziyê can dane, pêwîste deselatdarên cîhanê ji berjewendiyên kurte abûrî û siyasî bi der, bala xwe bidin daxwaz û hêviyên gelan. Alîkarî ji bo vebûna demokratîk, rêz girtin ji nirxên hevbeşe mirovatiyê, mafê gelan di biryardana bi ser çarenûsa xwe de, mafê tak ji bo jiyana ewle û dûr ji tundajoyî û pêşhukmiyan, azadiya jin û civakê, cudahiya dîn ji desthilata birêveberî û damezirandina saziyên serbixwe civakî erkên henokeyî ne ku dikevin ser milê guhertinxwazan.

Ji bo gelê Kurd dema li pêşiya me demek pir hesas e. Salên 40 dema şerê Cîhaniyê bû û Kurd ji pêvajoya siyasî paş man, çunku dereng bi xwe hesiyan, salên 50 dema avabûna hevpeymaniyan û destpêka şerê sar bû û Kurd dîsan jî neketin rojevê, salên 60 serdema şoreşên civakî, rû bi rû bûnên çekdarî û tevgerên rizgarîxwaz bû û dubare serhildana Kurd ji azadiyê bêpar ma, salên 70 serdema şoreş u kûditayan bû û Kurd wê carê li meydanan bûn, lê bûne qurbanî, di 80-yan de şerê sar vemirî û dûyê wê çû çavê Kurdan. Di 90- an de welatên nû li bin barê komonîzme filitîn û gehîştin serxwebûnê û Kurd ketin canê hev, salên 2000 bi 11'Septembrê dest pê kir, Rojhilata Navîn hejand û dubare derfet û metirsî bi hev re anîne pêşiya Kurdan.

Dehiya tê salên tevçûna paşmaiyên dîktatoran û ji nûve avakirina herêmê ye. Êdî gelê Kurd tu dem nîne ku ji dest bide, di salên pêşiya me de an azadî û wekhevî wê bê Kurdistanê, an wê girkana nixavtî di civakê de bi awayekê biteqe ku tu av nekarin wê vemirînin.



# Mertala dijî mûşekî a Nato û gefên rejîma Îranê



Selîm Zencîrî

Piştî heyamekê nîqaş û dan û standin li ser cihgîrkirina sîstema radarî û mertala dijî mûşekî a Nato, ku li Novambera sala borî li Lîsbon a Portoxalê de li ser lihev hatibûn, serencam hikûmeta Turkiyê rezamendiya xwe li dor avakirina vê sîstemê li xaka xwe de nîşan da. Helbet bi mercekê ku navê tu welat û aliyekê bi taybet Îranê, weke gef bikar nehê, belkî tenê bo parastin û parêzgarî kirin ji endamên Nato bihê nasîn.

Cihgir kirina vê sîstemê îmkana wê pêk tîne ku dewsa mûşekên hawêtî bigre û berî hingavtina armancê, biteqîne. Li vê çarçoveyê de bernameya mûşekî a rejîma Îranê li rex pirograma wê a navikî ku roj li pey rojê pêş dikewin, bûne çavkaniya tirs û nîgeraniya welatên deverê û herweha gefek micid bo ser asayîş û tenahiya rojava. Ji ber ku tê texmîn kirin ku bi kilawkê navikî bihên teyar kirin. Encama vê siyaseta rejîma Îranê bûye hêvênê çêbûna rikeberiyek nîzamî ku hezîne û têçoyek zor li warê aborî de heye, herweha tesîr û karîgeriyek xirab jî li ser aştî û pêwendiyên siyasî li asta deverê de daniye.

Rejîma Komara Îslamî jî ku beşek zaf ji bûtce û samana welat ji bo jordebirina şiyanên leşkirî bi armanca gihîştin bi meremên mirar ên xwe terxan kiriye, bi eşkere gefê ji rojava û bi taybet Îsraîlê dixwe ku bi mûşekên dûrawêj ên xwe(2000 KM) ve dikare wan bi armanc bigre. Bi taybetî ku serdar Emîr Elî Hacîzade, fermanderê hêza "hewafeza"a Spaha Pasdaran, mideheke berî niha ragihandibû ku Amerîkayê zehmet û giraniya ser milê wan kêm kiriye, çunku nawendên leşkirî ên Amerîka û hevalbendan niha li 120-700 km a sînorê wan de ne û ew dikarin bi hêsanî wan bi nîşange bigrin(bipêkin). Paşan jî gorî nawendên sîxorî ên rojava, Îran heya sala 2015'ê dikare mûşekên panax (qarre) birr berhem bîne.

Encama wan çavsorî, gef û gurr û herweha pêşketinên nîzamî ên Îranê bûne sedema damezrandina berwext a vê mertal û supera dijî mûşekî ji aliyê Nato ve, heya ku asta wan metirsî û xeteriyan kêm bikin. Lê gelek ji çavdêrên siyasî sedema cihgîr kirina vê mertalê berî dema diyarîkirî a xwe de, bi bûyerên nav Sûriyê de girê didin heya ku pêşiya desttêwerdanên Îranê û hevkariyên wê bo rejîma Sûriyê bo tepeseriyê bigrin.

Bi her hal Komara Îslamî a Îranê çar rojan piştî ragihandina vê biryara Turkiyê, bi heyrîmayîn û tirsek têkel bi parêzê ve, helwesta fermî a xwe ji zarê Ehmed Wehîdî, Wezîrê Berevanî û Ramîn Mêhmanperest, Berdevkê Wezareta Derve re da eşkere kirin û serbarê rexne û gazindeyên nerm ji hikûmeta Turkiyê bona pejrandina vê sîstemê li xaka xwe de, daxwaz ji Turkiyê û welatên Îslamî kir ku bi hişyariyek tewaw ve bibine asteng û rêgir li hember siyasetên -têkderane- ên Amerîkayê li deverê de.

Herweha Amerîka û hevalbend bi fakterên muzahim, têkder û bizirar bo welatên Îslamî nasandin. Lê ji ber ku rejîm li deverê de bi tenê maye û bi tewahî îzole bûye, nekarî helwestek tûjtir li hember Turkiyê de bigre û wê jî dilêşayî û ji xwe dûr bixe. Lewre parastina pêwendiyên xwe li vê rewş û zurûfê de bi Turkiyê re girîng dizane. Ji hêlek din ve pêwendiyên rejîmê li gel her yek ji endamên Nato de gelek aloz in, lewre pêtir ji her cîran û hevkewşenek Turkiyê, Îran hest bi tirs û xofê ji vê mertalê dike. Li vê pêxemê de jî xurtbûna pêwendî û berdewamiya hevalbendî a Turkiyê û endamên Nato li demdirêj de, weke gef li ser xwe dizane.

Turkiye li vê navberê de siyasetek dufaqî û dualî peyrew dike, ji aliyek xurtkirina pêwendiyan bi welatên îslamî ên deverê bona misoger kirina superhêzî û serdestiya xwe li deverê de em dibînin serbarê bihêzkirina pêwendiyên xwe bi ereban re, bi piştewaniya xwe ji serhildêr û xwenîşanderan, suwarê pêlên serhildan û nerazîbûnên xelkî li welatên Erebî bûye û dixwaze bibe berjeng û modelek hikûmetî ji bo wan.



Ji aliyek din ve bihêzkirina pêwendiyan li gel Nato û bi taybet Amerîkayê. Lê ji hemûyan balkêştir, qutkirina pêwendiyan bi Îsraîlê re hevdem bû li gel ragihandina biryara cihgîr kirina mertala dijî mûşekî a Nato ku bi raya gelek ji çavdêrên siyasî bona razîkirina rejîma Îranê, tundajoyên îslamî yên deverê, herweha dûrkirina raya bisilmanan û kêmkirina givaşên li ser xwe li dor vê mertalê li xaka xwe de, pêwendiyên xwe bi Îsraîlê re hilawîst û ew kire goriyê vê taktîka xwe. Anku him li nal da û him jî li bizmar.

Bi vê çendê Turkiyê him hêza berevaniya xwe garantî dike û him jî li demdirêj de berjewendiya Îsraîl jî misoger dike. Çunku ew mertal dibe sîstemek bona berevanî kirin ji Îsraîlê ku hevpaymanê Amerîka û endamê Nato ye û Komara Îslamî, Hizbula, Hemas, Elqaîde, Taliban jî li hemberî wê de cî girtine.

Aliyê din yê nerazî ji vê mertala dijî mûşekî, Rûsya ye ku her çend vê gavê weke gef bo ser berjewendiyên stratejîk ên xwe nizane, lê bi destpêka pirojeyek girîng ku nigeraniya wê xurt dike, dihesibîne. Li vê derheqê de nûnerê hertimî ê Rûsyayê li Nato(Dêmêtrî Ragozîn) ragihand ku nûçeyek bi vî awayî, wî sosret girtî nake, çunku gefek rasterast bo ser Rûsya nîne. Lê biryar da ku serdana Îranê bike û Îranê wek kart bikar bîne.

Eva jî nîşaneya wê ye ku dixwaze heybet û utorîteya xwe weke superhêzek naskirî yê cîhanê ku şiyana karîgerî û tesîrdayînê li ser welatan heye, biparêze û puanên zêdetir bidest bixe.

Bi giştî cihgîr kirina vê sîstemê li Turkiyê de, hest kirin e bi zerûret û hewcehiya xweparastin ji gefên nîzamî ên Îranê. Ji ber ku çekên mutearif(balistîk) û nemutearîf(etomî) ên rejîmê, gefên micid in bo ser tenahî û ewlehiya deverê û berjewendiyên rojava.

Gotinên çend roj berî niha ên Sarozî, serokkomarê Firansayê derheq bilind firiyên nizamî- etomî ên rejîmê û herweha dawîn axaftina Yokya Amano û nîgeraniyên wî li dor armanca leşkirî a rejîmê ji pirogramên navikî, eyankerê hestkirin bi wan gefên mezin in ku ji aliyê rejîma Îranê ve arasteya hemû cîhanê tên kirin.

Lewma armanca serekî a vê mertalê, rejîma Komara Îslamî a Îranê ye û bi raya gelek ji çavdêrên siyasî, damezrandina vê sîstemê, hevdem li gel baykot û ambargoyên navnetewî li dijî rejîmê, komara Îslamî zêdetir lawaz dike û herweha egera derbketinê jê pêtir dike.

## Turkiyê gotûbêjên bi rejîma Sûriyê re ragirtin

**Piştî gotûbêjên bi serkomarê Amerîkayê re serokwezîrê Turkiyê ragehand ku wan êdî tu baweriyek wan bi rejîma Sûriyê nemaye û niha pêde bi wan re gotûbêjan nakin. Turkiyê di destpêkê de hewil da rejîma Sûriyê razî bike ku desta ji tundûtûjiyan hilgire, lê ew hewlên Tirkiyê bêencam man.**

Di vê derheqê de bilavokên Amerîkayê nivîsandin ku Enqere û Waşington bîr ji amadekirina dewrana piştî Beşar Esed dikin. Erdoxan serokwezîrê Turkiyê ragehand ku ew tevî Amerîkayê bîr ji sepandina hinek cezayan jî bi ser Sûriyê de dikin.

Derheq tepeseriya berdewam ku di Sûriyê de birêve diçe, Sarkozî serkomarê Feransayê jî helwestek tund girt. Sarkozî ku bona beşdariya li civîna salane ya Civata Giştî ya NY de çûye Niyoyorkê, di hevdîtina bi heyeta Lnçbiyê re ragehand ku : "Konseya Ewlekariyê divêt tewaya hewla xwe bikar bîne da ku pêşiya kuştara xelkê Sûriyê ê sivîl bigre. Xelkê Sûruyê jî divêt bi qedera xwe şa bin û divêt ji azadî û demokrasiya li Sûriyê de piştevanî bihê kirin".



Rawêjkarê Nurî Malikiyê serokwezîrê îraqê jî ragehand ku Malikî daxwaz ji Beşar Esed kiriye ku dest ji kar berde. Hêjayî basê ye têkiliyên navbera Sûriye û Îraqê vê demê sar bpn ku Îraqê daxwaz ji Sûriyê kir ku wan terorîstên ku li xaka Sûriyê de dijîn radestî wan bike, lê Sûriyê ew daxwaz ret kiribû.

# Di Îranê de deshilatdar bixwe gendel in

Rûken

Her şêwe destbiserdegirtinek neyasayî bi ser mal û milkên giştî, û mifahwergirtina ne rewa ji deshilatê û îmkanatên malî, bona bidestveanîna qazanc û berjewendiyên şexsî, jêre dibêjn gendeliya malî. Gendeliya malî pêk tê ji îxtilas, rişwe(bertîl), rantên aborî, mifahwergirtina ji puanên malî, tezwîr, kêmkarî û ...hwd. Ew gendelî tevî pêkhatina saziyên îdarî û binyatên giştî ketin ber basê, û hertim wek gefek micid bo ser civakê û berjewendiyên şexsî tê hesêbandin.

Welatê me Îran di dîroka xwe ya hevçerx de şahidê gellek ji gendeliyên malî bûye. Hikûmetên gendel û dîktatorî bi mifahwergirtinên xirap ên malî, her çi xwastin, di gel xelkê xwe de kirin. Berpirsatiya di astê bilind de hertim serwet û sermiyanek zaf li pey xwe re hebû, û gellek kesan bi dana rişweyê( bertîlê) bi wan berpirsyaran, dikarîn bigîjin astek bilind ya deshilatdariyê.

Hokar û egera sereke ya nerizayetiyên xelkî, çi li serdemê Qacar, û çi li serdemê hikûmeta Rezaxan û kurê wî de, pêkhateya îstibdadê, û gendeliya malî, exlaqî û zulma siyasî û netewî bûye.

Kirîzên aborî di dîroka rabihorî ya Îranê de çavkanîgirtî ji fesada qata deshilatdar, dizîna serwet û sermayên netewî, giştî, û herweha hebûna dewletên gendel bûye.

Di vê serdemê de gendelî û bertîlxwariya endamên malbata seltenetê bi tewahî dijayetî hebû di gel buhagiranî, edetên civakî yên qata navincî, û xwarê ya civaka kevneşop ya Îranê.

Îran çi li serdemê Qacar û çi jî berî wê, derbeyên giran ji gendeliya malî û encamên wê wek hejarî, û ferq û cudahiyan xwariye.

Rêkevtinameyên wek Turkemençay, Gulistan, Talbut, Darsî, û Kapîtalasyon, her yek ji wan bi şêweyekê bacdana bi bîhaniyan bûye û dikeveçarçoveya gendeliyê de.

Şayên Îranê mal û milkên giştî, talan dikirin û her hemû jî, ji riya fesada exlaqî de xerc dikirin. Li gorî hinek çavkaniyan dema ku Nasiredîn şa hate kuştin, 85 jin hebûn, ku jinên di pileya yekemîn de, mehê 750 tumen, ên di pileya duyemîn de 200 -500 tumen, û pileya sêyemîn 100 -150 tumen ji xizîneya dewletê pere werdigirtin. Herweha keçên wî jî mehê 400 tumen werdigirtin.

Li serdemê Rezaxan de jî gendeliyê bê dadî dikir, û pile û payeyên hikûmetî tenê di destê hijmarek kêm kesan de bû. Li gorî hinek çavkaniyan, îdare û birêvebirina 300 postên girîng ên hikûmetî tenê di destê 70 heya 80 kesên nêzîkî Rezaxan de bûn, ku ew jî siyasetvanên kevnekar û xwedînifûz bûn.

Di vê serdemê de hejarî, ferq û cudahî, îstibdad, zilma û sitema siyasî û netewî, û kirîzên siyasî rewş pirr aloz kiribû.

Di serdemê deshilatdariya kurê Rezaxan de jî rewş ji rabihorî pirr xiraptir bû. Di serdemê mihemed Riza Pehlewî de êdî tewaya xizm û kes û kar û nêzîkên wî dest bi ser mal û milkên giştî de girtin, û sitema siyasî û netewî jî, xelkê Îranê ji her demê zêdetir nerazî kir.

Di vê serdemê de jî deshilatdar bona vê ku biselimînin ku dijî gendeliyê xebatê dikin, dest bi girtin û dadgehîkirina hinek bazarî û karmendan dikirin, wate siyasetek ku li Rojhelata Navîn de cihê xwe ê taybet heye.

Piştî vê ku deshilata pehlewî hate hiloşandin û Xomênî bi dirûşma dijatiya tevî nedadperweriyê, û nehîştina tu cure zilm û sitemekê bidestve girt, mixabin ew her bixwe jî bûne deshilatdarên herî gendel û nedadperwer, bi awayekê ku di dîroka xelkê Îranê de kêm mînak e.

Deshilatdarên Komara Îslamî ku bi navê ol û dînê Îslamê bi ser xelkê Îranê de deshilatdariyê dikin di rastî de xelkê Îranê xistne rojên herî reş û tal, di dîroka xelkê Îranê de.

Li vir de emê tenê îşareyê bi çend mînakan ji wan gendeliyan bikin.

Yek ji wan gendeliyên malî ku piştre Hate eşkerekirin, dosyeya Şehram Cezayêrî Ereb bû.

Şehram Cezayêrî tacirek Îranî bû ku li sala 1381'an di temenê 29 saliyê de bi tawana diziya heî mezin û kêşesaz piştî sala 1357'ê hate girtin.

Tawana wî di dadgehê de, avakirina 50 şîrketên cur bi cur ên bazerganî, rakirina 38 milyard û 10 milyon qiran, li qonaxên cur bi cur de, û dana wê bi takekesên cur bi cur wek bertîl, û tezwîrkirina belgeyan hate ragehandin, ku navê 50 kes ji hevalên wî jî wek tawanbar hate ragehandin ku piraniya wanser bi malbatên berpirsyarên payebilind ên rejîmê bûn.

Şehram cezayêrî bi 27 salan zîndanê ,hate mehkumkirin, lê piştre hate ragehandin ku navbirî bi dana pere bi meimuran kariye here dervey welat.

Serokê dezgeha dadweriyê Mehmûd Haşmiyê Şahrudî jî piştî bilavbûna nûçeya revîna Şehram Cezayêrî biryara li ser kar rakirina serokê Civata Taybet bi Tawanên Aborî û çend kesên din yên berpirsyarê dosyeya Şehram Cezayêrî û serokê girtîgeha Êvînê li ser kar rakir.

Şehram Cezayêrî di dawiyê de bi 11 salan hepsa teizîrî, dana 48 milyon û 600 heza û 185 dolarê Amerîkayî bi banka millî ya Îranê û




sinduqa Zemaneta Derforoşkirina kalayan, û dana 97 milyon û 200 hezar û 370 dolarê Amerîkayî bi sinduqa dewletê û bê pariya ji çalakiyên bazerganî li beşa sadrat û hinardekirinê, û anînejor ya kalayan, bê pariya ji her cure Teshîlatek bankî bo heyamê deh salan hate mehkumkirin.

Diziyek din ku wek diziya herî mezin di dîroka Komara Îslamî da tê binavkirin, diziya 3 hezar milyardî ji bankek Îranê ye.

Rojname û ragehandinên Îranê ji dosyeya diziya sê hezar milyard tumenî li Banka Sadrat wek meztirîn dosyeya diziya bankî di welat de binav dikin, lê dezgeha dadweriyê heya niha bi awayek fermî derbarê hurdekariyan, çavanî û aliyên malî û siyasî ên vê îxtilasê tu zanyariyek ne ragehandine.

Rojnameya Tehranê Êmruz li 7'ê Xermananê de raporek bilav kir û bas ji vê yekê kir ku ew dizî ji riya dana "teshîlatanê ji aliyê banka Sadrat ve bo şîrketa sermayedanîna "Emîr Mensur" û şîrketa Mêh Aferîd" ku ser bi kesekê bi navê "A.X" ye, pêk hatiye û encama wê jî, ji bo damezrandina "bîstemîn banka taybet ya welat" hatiye mezaxtin. Ku ji aliyê kesekê bi navê "A" di halê damezrandinêdebû.

"Şîrketa Geşepêdana Sermayegozariyê" a Emîr Mensur, ku tawanbarê sereke li diziya ji Banka Sadirat hatiye naskirin, tevî pêdagiriya li ser vê yekê ku tawanbarê yekemîn ê dosyeya sê hezar milyardî, tevî yek ji berpirsyarên payebilind ên tîcarî pêwendî hebûye, îşare bi rolê Mihemed Cehromî wezîrê Kar yê pêşîn, ê dewleta Ehmedî nijad û midûrê niha yê Banka Sadirat li vê dosyeyê de kir û nivîsand: "Dîhar e ku teshîlatên bi vî awayî bi bê haydariya midurên payeberz ên Banka Sadirat, ne mumkin dibû.

Li roja 6'ê Xermananê û piştî vajmaniya berfireh ya nûçeya vê diziyê li ragehandinan de, Banka Sadirat bi bilavkirina daxûyaniyekê ragehand ku midûrê Girûpa Millî ya Fuladê Îranê bi alîkariya kesekê ji karkerên vê bankê, dest bi vê îxtilasê kirine.

Di vê daxûyaniyê de, Banka Sadirat pêdagirî kir ku îxtilasa sê hezar milyardî ji Pûşpera sala 1388'an ve dest pêkiriye, lê ji 25 rojan berî niha ve berpirsyarên Banka Sadirat ya Xuzistanê ji alîkariya yek ji berpirsên tayên Banka Sadirat di gel xwediyê yek ji karxaneyên Polayê di warê diziyê de, hesiyane, û bi vî awayî hinek belge di vî warî de ketin destan de.

Girupa millî ya Fuladê Îran ji aliyê kêm 19 karxane û kargehan pêk hatiye.

Li gorî ragehandinên ne fermî serok û cîgirê Bankê, û birêveberê hewzeya girêdayî bi vê li Banka Sadirat a Xuzistanê, û xwediyê " Girupa Millî ya Fulada Îranê" û alîkarê xwediyê vê girupê li avakirina Banka Arya de, niha jî di girtîgehê de ne.

Ji bil vê dosyeyê Ebas Palîzdar birêveberê komîteya lêkolînan û taqîkirinê ya ser bi dezgeha Dadweriyê heyamekê ber niha li zanîngeha Ebu Elî ya Hemedanê û li zankoya Maf ya zanîngeha Şîrazê de bi îşare bi navê 50 kes ji berpirsyarên payebilind û ruhaniyên xwedînifûz kir ku di dosyeya gendeliya aborî, rantxwarî, û fesada exlaqî de cih digrin.

Bê guman heya wê demê ku Komara Îslamiya Îranê li ser kar be, em nikarin şahidê nemana hemû gendeliyan di Îranê de bin. Helbet kêm deshilat renge hebin ku têde hin kes tûşî gendeliya aborî bi awayên cur bi cur nebin, lê giring ew e ku di welatên din ên pêşkevtî bi dijî bê edaletiyan û gendeliyan doz tên vekirin û tawanbar digîjin cezayê xwe; Lê di welatê me de deshilat û dezgeha dadwereriyê bixwe ne dadperwer û gendel e. Lewra em tenê wê demê dikarin hêvîdar bi nemana gendeliyê bin ku di rastî de di welatê me de rejîm û deshilatek tewaw demokratîk û dadperwer bête ser kar û alaya xebata dijî gendelî û nedadperwerî hilgire.

# Sonamiya xwê gefek micid



Şehab Xalidî

Gola Urmiyê wek duyemîn gola şor a cîhanê çavkaniyek pirr giring ya berhemanîna xwê û cihek balkêş a torîstî û êkolojîk, û herweha meztirîn çavkaniya xwezayî ya kirmê Artimya ye ku di rêkxirawa navnetewî ya UNSKO de hatiye tomar kirin.

Mixabin bi sedema mifahwergirtina ne dirus ji ava çem û rûbaran ji bo karûbarên cotkariyê, û çêkirina bendavên zaf li ser ava wan rûbarên ku dirêjne nav gola Urmiyê de, û lêdana pira navbir li ser vê golê, û herweha bê mudîryetiya dewletê ber bi hişikbûnê ve diçe, ku heke dewlet zû vê kêşeyê çareser neke, wê qedera gola "Aral"ê li pêş be.

Bi hişikbûna gola Urmiyê cuda ji vê ku em her 9 giravên parka netewî û 'qenat' û dahatek baş ya aborî û bi nirxtirîn êkosîstema avî û xakî ji dest didin, karesatek mezin ya jîngey jî di vê herêmê de bi sedema bilavbûna vê xwê ya ku piştî hişikbûna gola Urmiyê bi cih dimîne wê rû bide, ku karnasên warên jîngehê wê karesatê wek sonamiya xwê binav dikin.

Karnasên warê jîngehê li ser vê bawerê ne ku tevî hatina her bayek tund, xwê bi ser zewî û zarên vê herêmê û heta cihên dûrdest de bilav dibe, û cuda ji vê ku berhemên cotkariyê bi tewahî ji nav dibe, dibe sedema bilavbûna gellek nesaxiyan jî di nav xelkê de, ku di encamê de, di vê herêmê de xwendin, perwerde, tendrustî û pîşesazî ji nav diçe û xelkê vê herêmê jî awareyê cihên dûrdest dibin.

Mixabin karbidestên dewletê di heyamê çend salên borî de serbarê hişdariya tund ya karnasên warê jîngehê kêmtirîn giringî nedane wan peyaman û tu pêngavek zanistî û bi kirayar ji bo çareserkirina vê kirîza jîngehî hilnegirtine.

Lewra çalakên warê jîngehê bi hestkirina bi berpirsayetiyê li hemberî jîngeha xwe de, bi awayên cur bi cur dest bi nerizayetiyê kirin û meşên medenî û aştîxwazane birêve birin, bona vê ku bi vî awayî karbidestên dewletî, bîr û raya giştî û herweha rêkxirawa navnetewî a UNSKO ji karesatek jîngehî agehdar bikin ku hewcehî bi çareseriya bilez heye, lê rejîm di ciyê vê ku guhê xwe bide daxwazên medenî û aştîxwazane ên xelkê nerazî, wek pîşeya hertimî ya xwe dest kiriye bi tepeseriya xelkê û teqe ji meşvanan kir, ku di encam de çendîn kes hatin kuştin û birîndarkirin.

Komara Îslamî ya Îranê bi tepeserkirina meşvanên nerazî bi hişikbûna gola Urmiyê, selimand ku ji tirsê nerazîbûnan (herçend ku siyasî jî nebin), û tenê hest bi berpirsayetîkirin be li hember jîngeha wan de, vê meşê bi gefek mezin bo ser deshilata xwe dizanin. Lewra jî bo hêcetanîna li hember tepeseriya xelkê nerazî, hewcehî bi vê yekê heye ku meşên weha wek pîlana dujminên derekî bide zanîn.

Di rastî de ew rejîm ji bo qahîmkirina stûnên deshilata xwe, ji bilî tepeserî û bikaranîna tundûtûjiyê, bîr ji tu riyek din nake, û cuda ji vê ku ji vê meşa aram û hêmin ditirse ku xelk têde tenê daxwaza pêşîgirtin ji karesatek jîngehî dikin, heta ji wan bone û munasibetên wek 13'ê Xezelwer û 22'ê Rêbendanê jî ditirse ku nebe xelkê ser şeqaman, wan meşan bi dijî nizama wan biguherin.

Bê guman di vê xebata medenî de yekîtî û yekparçeyiya di navbera Kurd û Azerî û Ermeniyan, dikare deskevtek baş (aliyê kêm di vî warî de) hebe ku bikare piştevaniya xelkê cihên din ên Îranê jî bo aliyê xwe rakêşe, û wan nerizayetiyan bike hereketek aştîxwazane, giştgîr, medenî û giştî li raserî Îranê de, hereketek ku bi dûr ji pirsên siyasî tenê pêwendî bi pêşîgirtin ji karesatek jîngehî ve hebe.

Herçend piştî tepeseriya xelkê û hewlên rejîmê bona derbazbûna ji vê rewşa hestyar û pirr aloz, li meclîsa rejîmê de, biryar hate dan ku budceyek ji bo çareserkirina pirsa hişikbûna gola Urmiyê bihê danîn, lê gellek ji karnasên siyasî li şirovekirina vê pirsa giring da li ser vê bawerê ne ku rejîm wek pîşeya xwe ya hertimî dixwaze bi wan qewl û sozan tenê xelkê nerazî vegerîne malên xwe.

Lê di rastî de li serdemê pêşkevtin û teknolojiya ragehandinê, û li serdemekê de ku hişyariya xelkê gihîştiye asta herî bilind ya xwe, her şêwe hewildanek bona xapandina wan bêçine ye, û tenê riya aqilane ew e ku rejîm di cihê xerckirina dahata netewî ya welat, bi armancên siyasî li dervey sînorên Îranê bala xwe bide gola Urmiyê û pêşiya hişikbûna vê golê û karesatek jîngehî li vê herêmê de bigre.



# Bûyera 11'ê Septembrê, destpêkek bo guhartinên Rojhilata Navîn



Dara Natiq

Deh sal bi ser bûyera terorîstî a 11'ê Septembra 2001'an, di DYA'ê re derbas dibe. Trajêdiyek ku têde zêdetir ji 3 hezar kes ji xelkê sivîl û bêsûç yên wî welatî bi carekê bûne goriyê hizra berteng, paremayî û şerxwazane a saziya terorîstî a Elqayîde û hevhizrên wê.

Bûyera han wijdana mirovahiyê li her cihek vê cîhanê hejand û civaka navnetewî ecêbgêrtî û heyrîmayî hişt. Lê ya ku cihê baldanê ye ev e ku ev bûyera terorîstî bû bi hêvêna hevdengî û hevgirtina zêdetir a cîhana azadîxwaz û mirovhez, bo xebat li dijî terorîzm û pêkanîna azadî û demokrasiyê û dadgeriya civakî û herwusan destpêkek bû ji bo destpêkirina komek ji guhertinên siyasî û civakî di asta cîhanî û bi taybetî Rojhilata Navîn li rejîmên dîktator û terorîstperwer di herêmê de.

Her di dawiya wê êrîşa terorîstî de, serbarê şermezarkirina wê ji aliyê civaka navnetewî ve, Amerîkayê bi hevkariya hêzên Nato û hevalbendên xwe, şerê dijî terorê bi awayek fermî ragihand û di yekem êrîşa nîzamî bo ser welatê Efxanistanê û veşargehên saziya terorîstî a Elqayîde di wî welatî de, rejîma totalîter û kevnparêz a Talibanê hiloşandin û hikûmetek hilbijartî a xelkê anîne ser kar. Her di doma wê êrîşa nîzamî de, di sala 2003'an de, car din Amerîka û hevalbendên wê di êrîşek nîzamî bo ser Îraqê, rejîma mirovkuj û dîktator a Sedam hiloşandin û hikûmetek demokratîk û federal anîne ser kar.

Niha weke dibînin ku Amerîka û hevalbendên wê di pêxema jinavbirina terorê û parastina berjewendiyên xwe di asta cîhanî û herêmî de, bi awayên cur bi cur piştgîriyê ji tevgerên cemawerî û azadîxwaz ên herêmê dikin. Şoreşên siyasî ên destpêka sala 2011'an, di herêmêm Rojhilata Navîn û Afrîqaya Bakûr, bi taybetî li welatên Tûnis, Yemen, Misr, Lîbî û Sûriyê, ku bi "Behara Erebî" binav bûye, zêdetir çavkanî girtî ji şoreşên civakî û jêrxana civakî bû, nek îdeolojiyek ku serhildanên yek li dîv yek li wan welatan li pey xwe re bîne. Jêhelçûna asta daxwaziyên xelkê herêmê û yek ji wan hêvî ji bo jiyanek baştir û bersivder a li gor hewcehiyên cîhana îro û cihgîrkirina aştî, azadî û pêkanîna civakekî pêşkevtî û dûr ji her terze îdeolojiyek hişk û paremayî, yekî din ji hegerên bibandor ên wan şoreşan bû. Bêşik ev şereş û guhertinên siyasî di herêmê de, bandorek erênî û rasterast li ser zêdekirin û geşandina tevgerên demokratîk û azadîxwaz di Îranê de û perawêzxistina roj li pey roj zêdetira rejîma Komara Îslamî a Îranê weke rejîmek terorîstperwer û piştevanê sereke yê girûpên terorîst û binajoxwaz daniye. Niha jî piştî derbasbûna deh salan bi ser bûyera 11'ê Septembrê, zêdetir ji 200 kes ji malbatên qorbaniyên wê bûyerê, mijûlî komkirin û tewawkirina fayla şikayet li dijî Îranê ne ku pêka rapora "Elerebiyê", dadgeha federal a Amerîkayê di Başûra "Mithen" rejîma Komara Îslamî a Îranê bi desthebûn di êrîşa 11'ê Septembrê û hevkarî bi saziya terorîstî a Elqayîde re sûçdar kiriye.



# Rêberê sozdar bi mamostayê xwe



Azad Kurdî

Hêj 3 sal bi ser bûyera şehîd û terokirina rêberê navdar ê Kurd Dr. Ebdulrehman Qasimlo û hevalên wî ji aliyê terorîstên şandî yên Komara Îslamî ya Îranê li ser maseya gotûbêjan derbas nebibû, ku derbeyek giran û mezintir a din ji peykerê PDKÎ û tevgera rizgarîxwaziya Kurd li Rojhilatê Kurdistanê ket. Ew jî terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî di 17'ê Îlona 1992'an de ji aliyê terorîstên Komara Îslamê ve bû.

Piştî Şehîdbûna Dr. Qasimloyê mamoste, Dr. Sadiq Şerefkendî (Kak Seîdê Pêşmergan) karî bibe cîgirê kêrhatî yê mamsotayê xwe ji bo rêxistin û rêberîkirina tevgera azadîxwazî û rizgarîxwaziya Kurd û rêberiya PDKÎ. Herçiqas heta niha jî bandor û rolê bê hempa yê Dr. Qasimlo di nav tevgera Kurd û PDKÎ de bi tevahî nehatiye tejîkirin, lê di demeke kin de Dr. Şerefkendiyê zana karî partiyê li ser piyên xwe rabigire û xurt bike.

Dr. Şerefkendî xwediyê gelek taybetmendiyên mezin bû ku şiya karek wiha mezin bike û bibe hêviya gel û pêşmergan û xeyalên dijmin bo jinavçûn û tunebûna tevgera Kurd û PDKÎ piştî terorkirina Dr. Qasimloyê mamoste pûç û betal bike. Ji ber ku şoreşa rizgarîxwaziya Kurd û PDKÎ li ser bingeha rêvebirina bikom û giştî ava kiribû, lewra Dr. Şerefkendî û piştî terorkirina wî jî, heta niha şagirdên wan du şehîdan nehiştine ala xebatê bikeve erdê û têkoşîn ji her alî ve dom dike.

Dr. Şerefkendî, rêberek xwedî bîr û ramanên xurt ê netewî bû, rêveberek cidî û jêhatî, wekî navê xwe sadiq, devliken û mandîneas, mirovdost û aştîxwaz bû, rêber û rêveberek bêhempa bû, alîgirê mafê çarnûsê bo gelên bindest, demokrasî, parastina maf û kerameta mirovan û edaleta civakî bû. Evana û dehan taybetmendiyên din ên demokrat û neteweyî, kesayetiyek mezin ji Dr. Şerefkendiyê zana çêkiribû.

Dema Komara Îslamî ya Îranê dît ku bi şehîdkirina Dr. Qasimlo, nekarîne tevgera rizgarîxwaziya Kurd lawaz bikin û têkoşîn û berxwedan berdewam e, bo tasfiye û şehîdkirina Dr. Şerefkendiyê zana jî ketin nav hewldan û komployan. Komara Îslamî di dehsalên 80 û 90'an de, sedan kesayetiyên siyasî û rewşenbîr ên Îranê li Ewrûpa û welatên herêmê teror kirin. Bo vê yekê jî komîteyek taybet hatibû sazkirin ku endamên wê rayedarên herî bilind ên Komara Îslamî bûn û biryara Dadgeha Berlîn a Almanya derbarê dosya terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî, belgeya herî baş e ji bo selimandina vê yekê. Balyozxane û binkeyên dîplomatîk ên vê rejîma Îranê wê demê û niha jî ligel, di darêtin û rêvebirina wan kiryarên terorîstî de rolê sereke lîstine û dilîzin. Di bûyerên terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî li Viyena (1989'an) û terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên pê re di sala 1992'an de, balyozxaneyên Komara Îslamî rolê eşkere di rêvebirin û encamdana wan kiryaran de hebûn.

Li gor xwendin û lêkolîn xwe, min kêm rêber dîtine ku mîna Dr. Sadiq Şerefkendî ji bo mamsotayê xwe sozdar bin. Axavtina dîrokî ya Dr. Şerefkendî, di bibîranîna şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî di sala 1989'an de li Qendîlê, belgeya herî zindî û mezin e ku dide xuyakirin çiqas xwedî soz bû ji bo mamostayê xwe yê mezin Dr. Qasimlo. Belkî hindek normal be xwendina vê teksta jêr ku beşek ji wê axavtina dîrokî ya Dr. Şerefkendî ye, lê guhdarîkirina wê mirov di her dem û rewşekê de dixe giriyê:

"... Şehîdên me yên serbilind û li serweyî hemûyan ew du şehîdên ku wêneyê wan li vir e, şehîd Pêşewa Qazî Mihemed, Pêşewayê me yê mezin û şehîd Dr. Qasimlo, şehîdê nû û herî mezin ê me, çavê wan du şehîdan li benda me ye, dayîka wan hemû şehîdan, hemû li benda me ne, miletek li benda me ye.

Di bîranîna wan şehîdên mezin de, em bi hev re biryarê didin û peyamnê ligel şehîdên xwe nû dikin û li pêşiya hemûyan ligel ruhê paqij ê Dr. Qasimloyê me yê xweştevî, Dr. Qasimloyê me yê mezin, mamsota û rêberê me, em sozê jê re bidin ku nigeranê me nebe, emê li pey te bihên, emê, yan ser bikevin, yan ew şanazî dê bibe para me werin kêleka te."

Sadiq Şerefkendî, bi xebata bêrawestan heta dema dawî a jiyana xwe, soza xwe li hemberî mamsoteyê xwe (Dr. Qasimloyê nemir) anî cih, soza wî ya serkevtinê nehat cih, lê bi gorîkirina canê xwe çû kêleka mamostaeyê xwe û sozdarbûna xwe selimand. Niha jî şagirdên wan du şehîdan û rêvîngên rêya azadî û xebata rizgarîxwaziya PDKÎ û civatên xelkê Kurdistanê sozdarê wan du şehîdan in, heta serkevtina armancên bilind û pîroz ên wan, dest ji xebat î têkoşîna azadî û rizgariya gelê Kurd bernadin û niha di her qadekê de ji bo vê yekê kedê didin û ji dana nirxan jî natirsin.



Rojev

# Tenahiya deverê, girêdayî guhertina rejîma Îranê ye!



A: Senar Hatemî

Vê dawiyê, Tonî Bilêr, serok wezîrê berê yê Birîtanya û nûnerê NY bo got û bêjên aştiya Rojhilata Navîn li hevpeyvînek xwe bi rojnameya binav û deng a Taymz a Londonê re tiştên balkêş anîne ser ziman û carek din bala raya giştî û rojeva medyayan kişande ser gotinên xwe.

Ew hevpeyvîna bi Bilêr re ku bi munasibeta 10'mîn salvegera bûyera 11'ê Septamberê hatibû lidar xistin, xalên gelek esasî û çarenivîssaz derheq deverê eşkere dike. Ew derheq rewşa ewlehî a deverê, Îranê weke mezintirîn sebebkarê nearamî û aloziyên Rojhilata Navîn destnîşan dike û bi eşkere daxwazkarê guherandina rejîma Tehranê bûye.

Wî hikûmeta Îranê bi sebebkarê dirêjbûna meseleya Îraqê piştî êrîşa leşkirî a sala 2003'an zanî. Tonî Bilêr li hevpeyvîna xwe de tekez dike ku li egera teyarbûna rejîma Îranê bi çeka navikî, Rojhilata Navîn dê pir zêde neewle û aloz bibe. Lewma guhertina rejîma Îranê bi hewce dizane û dibêje:'Guhertina rejîma Îranê ji bo min, demildest hesta hêvîdarî bi pêşeroja deverê bi awayek berbiçav xurt dike'. Bi awayek giştî, mijara guhertina rejîma Komara Îslamî, beşa herî xebersaz a hevpeyvîna wî tê hesibandin.

Bilêr dide zanîn ku ew(rejîma Îranê), ji gurûpên ku li çalakiyên terorîstî de dest hene, piştewaniyê dikin, herweha piştewan û alîkarên berdewam ên hêzên paremayî û tundajo li her cihekê ne. Yek ji pirsgirêkên li Îraq û Efxanistanê, desttêwerdanên Îranê bûye.

Li gotinên serokwezîrê berê ê Birîtanyayê de wusa xuya ye ku li egera nizîkbûna Îranê bi çekên navikî, dijberê kiryar û êrîşa leşkirî li dijî Îranê nabe, lê aligiriya xwe jî bo êrîşa leşkirî nîşan nedaye.

Ew li ser wê baweriyê ye ku gefa Sûriyê, şibî ya Îranê nine. Derheq rewşa Sûriyê û li egera destberdana Esed, ka gelo rewşa wir dê baştir be ya na? Daye zanîn ku Esed bernameya reformê li Sûriyê de pêş nexist, wî nîşan daye ku şiyan û karîna encamdana wî karî nine.

Helwesta wî nahê pejirandin. Ew dibe biçe! Wate her guhertinek li wir, bi çûna Esed re hevdem e. Tonî Bilêr li ser vê bawerê ye ku ji bo şikestdayîna wan gurûpên ku pênaseyek berxwar ji Îsalmê hene, riyek dirêj li hemberî wan e. Ew dibêje: Hêj gefa wan îdeolojiyên ku têgihîştinek nedurost û berxwar ji ol hene û çand û meseban li hemberî hev de dibînin, heye. Hewce ye ku şirove û teibîrên radîkal û tundajotî ji bawerên îslamî bihên cuda hiştin.

Gotinên Tonî Bilêr tenê çend rojan piştî pêşdîtina Lêon Panêta, Wezîrê Bereveaniya Amerîkayê bû ku guhertinên li Îranê de bi dûr nezanî. Wî dabû zanîn ku buhara erebî hetmen dê bigihîje Îranê jî. Dema gihîştina vê tevgera çarenivîs saz bi Îranê, xelik diyarî dikin û emê ji hemû îmkanatên xwe li rastaya piştewanîkirina wan de mifahê bistînin, heya cihekê ku ew alîkarî bi zirara wan nebin. Li yek sala borî de û piştî tepeser kirina nerazîbûnên piştî hilbijartina gera 10'mîn a serkomariya Îranê, mijara guhertina rejîma Îranê, aliyê kêm ji aliyê rayedarên fermî ên welatên rojavayî kêmtir bal li ser de dihate kişandin. Lê bi axaftinên vê dawiyê ên Wezîrê berevaniya Amerîka û herweha Tonî Bilêr re, wusa tê xuya kirin ku niha mijar û terhê guhertina rejîma siyasî a Îranê carek din ketiye ber bala raya giştî a cîhanê.

Bi awayek din ragihandina îmkana gihîştina pêlên guhertinan li welatên bisilman ên Rojhilata Navîn ber bi Îranê ji hêla her du rayedarên naskirî ên cîhanê û herweha şîreta wan ya guherandina rejîmê, bê şik li ser bingeha kubend û analîzên nû yên rojava ji rewşa heyî û pêşeroja deverê, xwediyê hêzek bîlquwe ye ku li egera azadbûnê de dikare bibe hereket û bizavek diyarîkirî û piraktîk.

Li hember wan gotinan de jî, take helwesta cihê li ser rawestanê, axaftina Elî Xamineyî bû ku îdia kir ku hikûmeta wî, (Wilayeta mutleq a Feqîh) adilane ye, çunku ew bi xwe adil e û nikare li gor dilê xwe riftarê bike ku Xomênî jî her wusa bûye.



# Sala nû a xwendinê li Îranê û ...





Ceifer Mubeşirniya

Car din jî di destpêka werza Payîzê de xwendegeh vebûn û bi milyonan zarok, nûciwan û ciwanan bi armanca perwedê û avêtina gavek din ber bi zanist û hînbûnê, rû li xwendingehan kirin.

Destpêka vebûna xwendegehan her sal weke bi coşhatina xwînek teze di demarên her civakekê de ye ku bê guman zindîbûna her civakekê jî girêdayî bi astê zanista di vê civakê de ye.

Zarok bi rengên cuda, çandên cuda û olên cuda di deverên cuda ên welatê Îranê de rû li xwendegehan dikin.

Pêşeroja ku çavnihêriya zarok û ciwanan, wate sermayeya pêşeroja welatê me dike da ku bi hêz û şiyana wan avedan bibe, dê li ser binêşeya ku Komara Îslamî dixwaze di destpêka îsal a xwendinê de ji nû ve bi hizrên kevn û paremayiye xwe danê, gelo dê ji xelkê re ser wê jiyanek rehet bi dîharî bîne ?

Mixabin di Îrana bin lepên kevneparêz û pawanxwazan de, guherîn di destpêka xwendina îsal de çend gav ber bi paşve bûne.

Rêberê Komara Îslamî radigehîne, ev dehsala dawiyê, dehsala pêşveçûn û edaletê di welat de ye û guhertinên di sîstema xwendinê de, guhertinên bingehîn in. Diyare ku Xamneyî baş ev yek zaniye ku heya îro jî di Îranê de ne edalet û ne jî pêşveçûn tune bûye û niha jî tune ye.

Li hember vê paremayî û naedaletiyê de, rayedarên Komara Îslamî ji bo çareseriyê vedigerin hezar û çendsed salan berî niha û dest dikin bi bilindkirina dirûşmên "Bi Îslamîtirkirina Xwendegeh û Zanîngehan" û vê yekê jî bi guhertinên bingehîn didin zanîn.

Eva di halekê de ye ku 32 sal e rejîma melayan bi îdiaya wê perwerdeyê ji tu hewlekê bo dûrxistina xelkê ji zanist û pêşkevtinê xwe neparastine.

Bi gotina Wezîrê Perwerde û Hînkirinê, xwendina îsal bi guhertinên bingehîn di xwendingehên Îranê de destpê kiriye.

Bi liberçavgirtina biryara "bi îslamîtir kirina zanîngeh û civakê" ku cudahiya regezî di qutabxane û zanîngehan de beşek ji vê biryarê ye, beşek ji guherînên han di sîstema xwandinê di destpêka îsal de li gor axaftinên "Wezîrê Perwerde û Hînkirinê", ev in:

Avakirina 15 hezar xwendingehên bo hînkirina "Quranê" û 20 hezar nimêjxane.

Ev wezîrê dewletê dibêje: "Ezê pirojeyekê di welat de destpê bikim bi navê (Qutabxaneya Quranî).

Her bi gotina wî, "niha 200 cihên perwerdeya Quranî di welat de hene, lê emê îsal 1000 xwendegehên din ên xwendina Quranê ava bikin, diyare armanca me a eslî, avakirina 50 hezar qutabxaneyên Quranê ne".

Biryar jî ji bo vê xwandinê wuha ye:

Piştînîvroyan di xwendegehan de perwerdeya Quranê ye bi awayê dilxwaz, lê danê sibê bi îcbarî (bi zorî) gerek perwerdeya quranê hebe.

Hemû xwendingehên seretayî di sê mehên destpêka xwendinê de, her roj waneya Quranê hene.

Di destpêka werza Payîzê de, di 1500 xwendegehên navendî de, her rojê 5 xulekan wê waneya Quranê hebe, yan mamosta bi xwe gerek 5 xulekan Quranê bixwîne, yan jî di vî demî de ji alavên deng mifah bihê wergirtin.

Ji pîroziya ola îslamê û pirtûka esmanî, wate "Quran"ê tu gumanek tune ye, lê di sîstema xwendina bi vî awayî de, armanca Komara Îslamî çî ye û dixwaze ji bo pêşeroja welat çi perwerde bike?

Gelo dixwaze civak bi tewahî bibe mela û bibin peyrewên wan, yan di rastî de bi vê sîstema xwendinê dixwaze îlm û zanînê têxe nav civakê de!!!.

Ev pirsa han ku rejîm bi guhertinên bingehîn dizane, di halekê de ye ku mamostayên xwendegehan bi awayek zanistî berdewan gelaleyên nûkirina sîstema xwendinê dixin ber destên rayedarên rejîmê, lê bêbersiv dimînin.

Du pirsên herî girîng di vî warî de ev in ku di Îranê de 6 netewên sereke dijîn bi 6 zimanên cuda cuda ku hemû bi yek ziman dixwînin.

Derheq vê pirsê jî çendîn car mamostayên deverên netewên kêmanî û di rastî de bindest, gazindeyên xwe gihandine Wezareta Perwerde û Hînkirinê ku pirr zehmet e zarok di destpêk de bikarin bi zimanek biyanî bixwînin. Yek ji wan mamostayan dibêje:

"Zarokên ku tucar bi zimanê Farsî neaxaftine, dê çawa bikare li gel zarokek Tehranê bikeve qada rikeberiya xwendinê" . Eva di halekê de ye ku baskirin ji pirsa duzimanî ku pirsek pirr girîng e, ji bo rejîmê "Bive" ye û weke gef ji vê yekê dinêre.

Pirsgirêkeka din jî pirsa bijîva mamostayan e. Mamostayên ku hemû jiyana xwe bo perwerdeya zarokên welat didanin, mûçeyê wan ewqas nine ku bikarin jiyanek asûde bimeşînin. Lewma ger danekê di xwendingehan de mijûlî pîroztirîn xizmetan in, danê din yê rojê dikevin kasibiyê ji bo bijîva jiyana xwe.

Li gor mamostayên qutabxaneyên Îranê, "dema ku mûçeyê mamostayan têra bijîva jiyana wan neke, mamosta neçar bi kasibiyê dibin û ev yek jî dibe sedema daketina asta xwendinê di xwendegehan de.

Di rastî de rayedarên rejîmê pêka siyaseta ku dimeşînin hez ji civakekê nakin ku têde asta zanistê li jorê be, belkî ew bi tewahî kar bo civakekê dikin ku zarok di wê civakê de li gorî îdeolojiya wan perwerde bibin û hertim peyrewê wan bin da ku bi rehetî bikarin bi ser xelkê de desthilatdariyê bikin.

# Xwekujî, encama rewşa xirab a civakê



**Sadiq Wehdanî**

Xwekujî, diyardeyek giştî û cîhanî ye ku kêm û zêde di hemû civakên cîhanê de heye. Tevî gihîştina seqa û rewşa cîhanî bo qonaxa modern, gellek alav û hizrên modern bo jiyanek baştir bo mirovan, pêk hat. Lê bandorên xirab ên modernîte jî tevlî jiyana xelkê cîhanê bûye. jordeçûna serjimêriyên diyardeyên weke, xwekujî, telaq, îtiyad û ..., çend mînak ji bandorên seqaya modernîtê, wate alozbûna pêwendiyên civakî û pêkhatina navberên tebeqatî bû.



Xwekujî bi riftara kesekî/ê dibêjin ku bi mirina wî/wê bi dawî tê û ew kes ji encama riftara xwe jî agehdar e. Xwekujî, pêwendiyek rasterast ligel rewşa derûnî a mirovan ve heye. Helbet diviya vê yekê jî li ber çav bigrin ku rewşa saykolojîk û derûnî a her kesek bixwe pêwendiyek rasterast tevî rewşa jiyan û civakek û herweha bîr û bawerên wê/wî hene.

Zana û derûnnasan, her çend dereng, lê jordeçûna serjimêriya xwekujiyê, weke metirsiyek micid zanîn û ji wan re cihê nîgeraniyê bû û ew di 10'ê Septambra 2005'an de, di civînek taybetî de encumenek bi navê, Civata Pêşîgirtin ji Xwekujiyê pêk anîn û ew roj bû "roja cîhanî a pêşîgirtin ji xwekujiyê".

Li gor amarên wê saziyê her sal, 1 Milyon kes di cîhanê de bi sedema xwekujiyê canê xwe ji dest didin, eve di halekê de ye ku salane nêzîk bi 20 Milyon kes dest bi xwekujiyê dikin, lê xwekujiya pirraniya wan bi mirinê bi dawî nayê.

Xwekujî, diyardeyek aloz e ku lêkolîn di vî warî de, hewcehî bi dîtingeh û mêzekirinek kûr û çend aliyane heye.

Ji dîtingeha derûnî û li gor serjimêriyên cîhanî, %95 ji wan kesan ku xwe dikujin, bi awayek tûşî nexweşiya derûnî bûne. Nexweşiyên weke diprêşin, skîzofirnî, dilkutik û ..., helbet ev yek nayê vê wateyê ku hemû nexweşên derûnî, dest bi xwekujiyê bikin. Bêguman faktora saykolojîkî, sedema tewawker a xwekujiyê ye. Lê her faktorek saykolojîkî, pêwendiyek rasterast li gel rewşa civakek ku di wê de dijî heye.



Lêkolîna diyardeya xwekujiyê ji nêrîna civaknasî ve bi awayek din e. Di vê dîtingehê de, tak, qurbaniyê rewşa xirab a civakî ye, û rewşa xirab a civakî ye ku sedema tûşbûna tak bi nexweşiyên derûnî û di encam de xwekujiyê dibe.

Herweha sedemek din a girîng bo xwekujiyê, rewşa abûrî ye. Di sala 1930'î de, û li pey mezin a abûriya welatê Amerîkayê, serjimêriya xwekujiyê ji navinciya 12.5 kes ji her 100 hizar kesan, gihîşte 17.5 kesî ji her 100 hizar kesan. Wate her çi rewşa abûrî xirabtir be, asta xwekujiyê jî zêdetir dibe.

Di Îranê de rojane 13 kes xwe dikujin. Amarek ku her ku diçe zêdetir dibe. li gor serjimêriyên xwekujiyê ku ji aliyê bilavokên rejîma Îranê ve hatiye ragihandin, navinciya xwekujiyê di sala 1389'an a Rojî de, li çav 20 salî berî niha de 5 beramber jorde çûye. helbet bêguman weke hemû serjimêriyên hikûmetî di Îranê de amarek rast nine û hikûmet bo veşartina rewşa xirab a civaka Îranê, xwe ji dana amarên rastîn, xwe diparêze.

Pêka hukmên Îslamî, xwekujî kiryarek xirab û heram e û ew kesên ku xwe bikujin tu carî ji aliyê xwedê ve nayên bexşîn. Di civaka Îranê de ku kêm û zêde civakek mesebî ye û beşek mezin ji xelkê Îranê baweriyek kûr bi Îslamê hene, lê dîsan jî serjimêriya xwekujiyê li serê ye. Wate faktora Îslam jî nekariye bibe sedema pêşîgirtina ji xwekujiyê.

Me îşarê bi vê yekê kir ku rewşa abûrî û civakî pêwendiyek rasterast tevî diyardeya xwekujiyê heye. Jordebûna amarên îtiyad, bikaranîna elkolê, bêhêvîbûn ji pêşeroja jiyanê, telaq û pirsên malbatî, çend nîşane ne bo nîşandana rewşa nexweş a her civakek, û faktorên han hander in bo xwekujiyê. Bo mînak, kesên moitad bi sedema bi tenê manê, hest bi pûçî û tenêtiyê dikin, rewşa cesteyî a wan nebaş e, bêhêvî ne, di vê rewşê de hinek moitad, baştirîn rê bo rizgarbûna xwe, dawîanîn bi jiyana xwe dizanin.

Hêjayê gotinê ye ku mijara xwekujiyê di warên din de jî tên lêkolînkirin. Weke xwekujiya jinan, xwekujî di nav ciwanan de, lêkolîn di warê awayên xwekujiyê, pêwendiya xwekujî û rewşa cesteyî a xwekujer, û ...hwd.

# Îran di warê perwerdekirina qutabiyan de rewşek xirab heye

**Îran di refa welatên herî paremayî di warê dabînkirina Înternêtê de cih girtiye.**

Li gor rapora herî nû ya civata cîhanî a abûriyê, xwendingehên Îranê pêka faktora rewşa liberdestbûna Întirnêtê di xwendingehan de, di nav 142 welatên cîhanê de, di pêleya 118'mîn de cih girtiye.

Nîma Raşidan, karnasê zanista pêwendî û teknolojiyê di vî warî de dibêje, karbidestên rejîma Îranê nêrînek ewlehî li hember bikaranîna Întirnêtê hene û eve dibe sedem ku Întêrint di Îranê de bê qutkirin. Nevbirî li ser vê baweriyê bû ku cihgirtina Îranê di pileya 118'mîn a cîhanê berhema destêwerdanên siyasî ên karbidestên rejîmê di vî warî de ye.




**Herweha li gor rapora wê saziyê, Îran di warê çavaniya(koalîteya) perwerdê de, li nav 142 welatên cîhanê, di pileya 66'mîn de cih girtiye**.

Eva di halekê de ye ku di Rojhilata Navîn de, welatên Qeter, Lubnan û Îmarata Erebî, baştirîn rewşa perwerdê hene û Îran jî di vî warî de, di pileya 8'mîn a welatên Rojhilata Navînê de cih girtiye.

Herweha Îran di warê çavaniya birêvebiriya dibistanan de di pileya 94'mîn a welatê cîhanê de cih girtiye.

# Yilmaz Guney, deng û rengê Kurd di demên tarî de

A: Arif Velezî

Yilmaz Guney di sala 1937'an de li gundek Edenêyê bi navê Yenîceyê hate dine, û yek ji 7 zarokên malbateke karker ê Kurd bû.

Dibistana seretayî û ya navîn li Edeneyê qedand. Ew ji 9 saliya xwe ve dest bi karkirinê dike. Guney, ji karên pembo ve bigre heta hesabgeriyê, gelek karên cîhêreng kirin. Di van salan de wî dest bi nivîsandina çîrokan kir. Wî li zanîngeha Enqerê, Hiqûq, û li zanîngeha Stenbolê jî li rişteya abûriyê de xwend. Di wan salan de wî kovareke hunerî ya bi navê Lûtke derdixist û çîrok dinivîsandin. Dema xwendina xwe berdewam dikir, rejîsor Atıf Yılmaz nas kir.

Bi alîkariya Atıf Yılmaz bû nivîskarê senaryoyan, lîstikvan û alîkarê rejîsorê. Yelmaz dema ku di sala 1957'an de ji bo xwendina aboriyê diçe Stenbolê, nikare dewam bike. ji ber ku ji sala 1955'an ve dadgehê di destpêkê de 7 sal û nîv cezayê zîndanê û 2 sal û nîv cezayê surgunê dabû Yelmaz. Paşê dadgeha pêdaçûnê biryarê radike û di encama dadgehên nû de cezayî wî dibe salek û nîv zîndan û 6 meh dûrxistin.

Bandorên civakî ên wan fîlmên ku Yelmaz Guney li wan de wek derhêner û lîstikvan kar kiriye bi sedema piştevaniya Kurdan û herweha xwendekaran, deshilata Turkan gellek nîgeran dike, bi vî awayî Yelmaz Guney piştî derbeya leşkerî ya sala 1970'î de bi tawana propagendekirina nîzamên komonîstî û herweha sparatîsmê û tevlîbûna bi bûyerên sîyasî re, bi dozde salan girtîgerhê tê mehkumkirin, lê di sala 1972'an de tê girtin û 2 salan li girtîgehê dimîne û paşê serbest tê berdan.

Ew di girtîgehê de jî desta ji nivîsandina fîlman hilnagre û bi alîkariya hevalên xwe, wan senaryoyan li derveyî girtîgerhê dide amadekirin. Fîlmên bi navên "Yol" wate Rê jî yek ji van berhema ye ku di sala 1982'an de, bi fîlma 'Wenda' ya rejîsorê Yunanî Kosta Gavras re, xelata Palmiya Zêr, parvekiribû.

Navbirî di bersiva vê pirsyarê de ku gelo çavan fîlmek ku xelatek weha giring bidest bixe, lîstikvanên Turk naxwazin têde bilîzin dibêje ku "Yên ku di dema aştiyê de sirudên şoreşgêrî dixwînin, di demên şer û aloziyan de hewil didin ku xwe veşêrin".

Yilmaz Guney derbarê fîlma xwe ya bi navê "Rime" de ku ew jî yek ji şahkariyên navbirî têne hesêbandin weha dibêje: " Di rastî de min nekarî ku ji zimanê Kurdî ji bo vê fîlmê mifahê wergirim, Ji ber ku heke min weha kiriba tewaya wan kesên ku bi min re alîkarî dikirn, wê biketana nava girtîgehê de".

Di rastî de ew fîlm wek lênêrînek Şikspîrî li ser zilma siyasî ya dewleta Turk û herweha rewşa jinên Kurd û kevneperestiyê têne hesêbandin.

Yılmaz Güney dema li Edenê fîlma bi navê 'Endîşe' dikişand, bi 18 sal cezayê zîndanê hate mehkum kirin. Yılmaz Güney, di sala 1981'an ji girtîgeha Spartayê reviya û bi awayekî veşartî derkete dervehî welat.

Yilmaz Guney li sala 1984'an di nameyekê de ji bo dozgerê giştî li Turkiyê de dinivîsîne ku " Bi bawera min pêkanîna dozê derbarê kuştara Ermeniyan gellek giring e û ji bo kesên Turk ên ku dadperweriyê meraq dikin, wê giringiya xwe hebe.

Bi bawera min ew komkujiya ku sala 1915'an li ser Ermeniyan li gorî bernameyek ji pêş de darêtî birêve çû, heke Komeleya Neteweyan wê demê ew kiryar protesto kiriba, bê guman kemalîstan ew reftara dijî mirovî bi Kurdan re jî nedikirin. Bi raya min nabe baskirina ji rastiyek dîrokî bibe sedema pêkanîna nefret û bêzarî û hêrsên nejadî".

Güney di 9'ê Îlona sala 1984'an de, di 47 saliya xwe de li Feransayê çû ser dilovaniya xwe.

Dema ku navbirî koça dawiyê kir rojnameyek Turkî weha nivîsand: " Êdî Fîlm bi dawî hat".

**Fîlmên ku Güney tê de weke nivîskarê senaryoyê, derhêner û aktor rol heye, ev in:**

- At, Avrat, Silah, (Hesp, Jin, Çek) (1966)
- - Bana kurşun işlemez (Gule li min nake) (1967)
- Pire Nuri-Seyithan (Kêç Nûrî-Seyîdxan) (1968)
- Aç kurtlar, Bir çirkin adam (Gurên birçî, Mêrekî netîtal, nerind) (1969)
- Umut, Piyade Osman, Yedi Belalılar (Hêvî, Piyager Osman, Heftbelayan) (1970)
- Kaçaklar (Fîraran) - Vurguncular (Rêbirran) - Ibret (Sosretî) - Yarın son gündür (Sibeyê roja dawîn e)-Umutsuzlar (Bêhêviyan) - Acı (Jan) - Ag˘ıt (Lorîn) - Baba (Bav) (hemî di sala 1971an de)
- Zavallılar (Belengazan) (1972/74)
- an de Arkadas (Heval) (1974)

**Fîlmên ku tê de weke aktor û nivîsarê senaryoyê kar kiriye**

- Alageyik (Karxezal) - Bu vatanin çoçuklari (Zarokên vê welatê) (herdu di sala 1959an de)
- İkisi de Cesurdu (Herdu jî wêrek bûn) (1963)
- Her Gün Ölmektense (Heya her roj bimirî) - Kamalı Zeybek (Zeybekê bi singo) - Koçero (hemî di sala 1964an de)
- Kasımpaşalı (Qasimpaşayî) - Kasımpaşalı Recep (Recebê Qasimpaşayî) - Konyakçı (Konyakxwir) - Krallar Kralı (Keyê keyan)(hemî di sala 1965an de)
- Aslanların Dönüşü (Vegera şêran) - Es¸ref Pasalı (Eşrefpaşayî) - Hudutların Kanunu (Zagona tixûban) - Yedi Dagın Aslanı (Şêrê Heftçiyayan) - Tilki Selim (Rovî Selîm) (hemî di sala 1966an de)
- At Hırsızı (Dizê Hespan) Banus - S¸eytanın Oglu (Lawê Ehrîman) (hemî di 1967an de)
- Azrail Benim (Ez im Ruhstîn) - Kargacı Halil (Qijikvan Xelîl) (hemî di sala 1968an de)
- Belanın Yedi Türlüsü (Heft cureyê belayan) (1969)
- İmzam Kanla Yazılı (Mora min bi xwînê hatiye nivîsîn) - Sevgili Muhafızım (Parêzvanê min ê xoşevîst) - Şeytan Kayaları (Zinarên Ehrîman) (hemî di sala 1970an de)

**Fîlmên ku tê de weke nivîsarê senaryoyê kar kiriye**

- Karacaoğlanın Kara Sevdası (Evînreşiya Karacaoğlan) (1959)
- Yaban Gülü (Gulbejî) (1961)
- Ölüme Yalnız Gidilir (Tenê ye çûyina mirinê) (1962)
- Burçak Tarlası (Zeviya xalxalî) (1966)
- Endişe (Bedgumanî) (1974)
- İzin (Destûr) - Bir Gün Mutlaka (Ew ê rojekê) (hemî di sala 1975an de)
- Sürü (Kerî) (1978)
- Düşman (Dijmin) (1979)
- Yol (Rê) (1981)
- Duvar (Dîwar)

**Fîlmên ku tê de weke aktor kar kiriye**

- Tütün Zamanı (Dema titûnê) (1959)
- Dolandırıcılar Sahı (Mîrê gendelgeran) - Tatlı Bela (Belaya şîrîn) (1961)
- Halimeden Mektup var (Ji Helîmeyê name heye) - Kocaoğlan - Kara Şahin (Reşik Şahîn) - Mor defter (Deftera mor) - 10 Korkusuz adam (10 mêrên wêrek) - Prangasız Mahkumlar (Zîndaniyên bêqeydik) - Zımba Gibi Delikanlı (Xortê berbaz) (1964)
- Ben Öldükçe Yaşarım (Pistî mirim wê ezê bijîm) - Beyaz Atlı Adam (Mêrê bi hespa spî) - Dağların Oğlu (Lawê Ciyam) - Davudo - Gönül Kuşu (Cûkê dilan) - Sayılı Kabadayılar (Dîlawerên bijimar) - Kan Gövdeyi Götürdü (Xwîn gewdê bir) - Kahreden Kurşun (Guleyê ku qehr dike) - Haracıma Dokunma (Dest nede xercê min) - Kanlı Buğday (Genima bi xwîn) - Korkusuzlar (Yên bêtirs) - Silaha Yeminliydim (Sondxwariyê silehê bûm) - Sokakta Kan Vardı (Li kuçeyê de xwîn hebû) - Tehlikeli Adam (Mêrê bi talûke) - Torpido Yılmaz (Yılmazê Torpîdo) - Üçünüzü de Mıhlarım (Ezê we her sêyan mix bikim) - Yaralı Kartal (Teyrê brîndar) (1965)
- Anası Yiğit Doğurmuş (Daykê wî egîd aniyê dinê) - Çirkin Kral (Keyê bêteşe) - Kovboy Ali (Eliyê Kowboy) - Silahların Kanunu (Qanûna cêkan) - Ve silahlara Veda (Û xarit ji cêkan re) - Yiğit Yaralı Olur (Egîd brîndar dibe) (1966)
- Balatlı Arif - Bomba Kemal - Büyük Celatlar- Çirkin Kral Affetmez- Eşkiya Celadı- İnce Cumali- Kızılırmak- Karakoyun-Kazanoğlu- Kuduz Recep- Kurbanlık Katil (1967)
- Aslan Bey - Beyoğlu Canavarı - Can Pazarı - Marmara Hasan - Öldürmek Hakkımdır (1968)
- Bin Defa Ölürüm - Çifte Tabancalı Kabadayı - Güney Ölüm Saçıyor - Kan Su Gibi Akacak - Kurşunkarın Kanunu (1969)
- Çifte Yürekli - Kanımın Son Damlasına Kadar - Son Kızgın Adam - Zeyno (1970)
- Çirkin ve Cesur - Namus ve Silah (1971)
- Sahte Yar (1972).


Yilmaz Guney

# Dema ku çand bikewe dest hikûmetek dijîçandî

Kawe

Rewşa çandî a Îranê ji her aliyekê û di her warekê de, rewşek aloz û xirab e. Di cîhana niha de, çand jî tevî diyardeyên din ên mirovî, tevlî pêvajoya gilobalîzêyşinê bûye û pêwendiyên çandî ên herêmên cur bi cur ên cîhanê bi hevre têkiliyên bibandor hene û ji taybetmeniyên hevdu bo tekmîlkirina xwe mifah distînin, lê Îran û çandên cur bi cur û berfirehên wî welatî, tu cihek di nav vê pêvajoyê de tune ye.

Rejîma Îranê hertim hewl dide ku çandek dugm û îdeolog weke hemû mijarên din, tenê di riya misogerkirina desthilatdariya xwe, pêk bîne û di vê pêvajoyê jî wateyên nû ji çandê xistiye ber bas, wateyên ku taybet bi Komara Îslamî ye û tenê karbidestên rejîmê dizanin çî ye.

Ji mêj ve ye ku Komara Îslamî dijberiya xwe li hember esliyeta çandê nîşan daye. Di rojên destpêkên hatine serkara rejîmê de, mûzîk bi awayekê berbiçav hat qutkirin û alavên mûzîk weke alvên "lehv û leeb" bi xelkê da nasandin, herweha şano û sînema bi tewawî kete jêr çavedêriya rejîmê de, û ekter û derhênerên xweser êketne ber xwzeba wan deshilatdaran.

Rejîmê bi avakirina "Şêwra Bilind a Şoreşa Çandî", hewl da ku wateyên xwe ji çandê teorîze bike. Ew mînakên ku rejîm bas ji wan dikir bi tu awayî li ser bingeha esliyet û pênaseyên normal ên çandê nebû û bi tewawî reng û bêhna îdiolojiya Îslamî(bi awayê Komara Îslamî) dida.

Di Komara Îslamî de, çanda pirtûk û pirtûkxwenî, pêwendiyên civakî, diyardeyên dîrokî, werziş û ... di xizmeta îdeolojiya rejîmê de ne, û bi wateyek din, çand di çarçoveya îdeolojiyan de hate kurtkirin, û di rastî de sembolên çandî nekarîn bigihîjin cihê eslî û rastîn ê xwe. Ji aliyekê din ve rejîmê jî di vê pêvajoyê de nekariye armancên xwe bi dest bîne.

Encama siyasetên rejîmê, tenê lawazkirina çandê bûye, bo mînak çanda pirtûkxwenî di Îranê de di rewşekê herî xirab de ye, navinciya xwendina pirtûk û, 2 deqîqe di her rojê de ye, yan di warê bikarnîna Întirnêtê, hêjayî gotinê ye ku bikarhênerên Întirnêtê di bajarê Tehranê, rekorddarên lêgerîn bo malperên siksî, di cîhanê de ne.

Werziş jî yek ji diyardeyên çandî tê hesibandin ku di rastî de rejîmê destêwerdanek eşkere di vî warî de heye, û encama vê siyasetê jî tenê dilsarkirina werzişvanan û anîna xwarê ya pileyên werzişî ên Îranî di asta cîhanî de bûye. Çend hefteyan berî niha, 17 werzişvanên keç ên Îranê piştî sefera xwe bo welatê Koreya Başûrê bi sedema rewşa nebaş a werzişî bo jinên Îranî, venegeriyan Îranê, yan gellek car werzişvanên Îranî di festîvalên werzişî ên navnetewî, bi sedema givaşên hikûmeta Îranê nekarîne li hember werzişkarên Îsrayîlî de amade bin û ji berdewamiya pêşbirkêyan bêpar bûne.

Ji aliyekê din ve diviya em qala vê yekê jî bikin ku Îran, welatek pirrnetewî ye.

Pirrnetewîbûna Îranê bi wateya pirrçandîbûna wî welatî ye. Neteweyên ku her yek ji wan çanda taybet bi xwe hene û bo pêşvebirina çalakiyên çandî ên xwe hewcehî bi pirogiramên taybet bi herêmên xwe hene, lê hikûmeta newendî xincî bikaranîna îdeolojiya dogm a xwe di siyasetên çandî ên xwe de, siyaseta navendîtiyê jî bikar tînin, ku di vê siyasetê de pêragihîştin bi çandên netewên ne Fars ên Îranê, tu cihek xwe tune ye.

Herweha destêwerdana navendên leşkerî weke sipaha Pasdaran, bi sedema esliyeta nîzamîbûna wan ku tu têgihîştinek ji mijarên çandî tunene, çanda Îranê tûşî zirarek zaf kiriye.

Heyamek berî niha, sipaha Pasdaran rêkevtinnameyek li gel Wezareta Çand û Geşepêdana Îslamî a Îranê girê da ku pêka wê pêymanê, Wezareta han erkdar bûye ku zêdetir ji 1000 pirtûkxaneyan bo wê navendê ava bike, herweha sipah bi bikaranîna pitansiyêlên Wezareta Îrşadê, dikare siyasetên xwe di warê çandê de birêve bibe.

Sipaha Pasdaran weke navendek leşkerî, bingehîtirîn parêzerê desthilatdariya Komara Îslamî ye, ku wusan bû hemû siyasetên wê navendê tenê bo parastina desthilatê tê darêtin, û karbidestên rejîmê jî hemû alav û pitansiyêlên xwe li ber destê Sipahê danîne.



# Ey dîlberê



Can Kurd

Tu hindiva çavê minî
Cerg û serî, canê minî
Çendî tu rind û rûgeşî
Naz û ciwan û çavreşî

Xwezî tu carek serkevî
Rabî ji tarî derkevî
Wekî gulan bipişkivî
Aza bibî, bi pêşkevî

Gel xwîna xwe daye ji ter
Mêr û pêya kuştin di ber
Herdem em in li ceng û şer
Boyî jiyanek bê keser

Navê te ye ava jiyan
Tava te da dêmên çiyan
Dilşa dikî bav û diyan
Derkev ji bin perda şevan

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


## Ajotvaniya mêran ji bo sirwîsên keçan hate qedexekirin



Îsal bo yekem car xwendingehên qonaxa paşnawendî a keçan neçarin ku ji ajotvanên jin bo sirwîsên dersxwenan mifahê wergirin.

Serdar Husên Rehîmî ragihand ku di qonaxên dibistan û nawendiyê de, xwendingeh dikarin ji ajotvanên mêr ji bo sirwîsan mifahê bistînin, lê di qonaxa paşnawendî de biryar hatiye dan ku tenê ji ajotvanên jin bo sirwîsan re rê heye.

Navbirî herweha pêdagirî kir ku heke em di vî warî de şahidê cî bi cî nekirina vê biryarê ji aliyê wan ajotvanan ve bin ku karnameya hînkirinê ji bo wan hatiye derkirin, emê bi tundî wan ceza bikin.

## Mîkanîkek Yemenî rojane girîs û rûnê tormozê vedixwe




**Mîkanîkek Yemenî ku niha li Mekê de dijî, ji 27 salan berî niha ve hînî vexwarina girîs û rûnê tormozê bûye.**

Mihemed Omer ku bi eslê xwe xelkê Yemenê ye ragehand ku ji 17 saliya xwe ve karê mîkanîkiyê dike û fêrî vî karî bûye û niha bi tewahî adet bi vê xwarinê jî kiriye û nikare biterikîne.

Navbirî di vê derheqê de got ku ew rojane du yan sê qutiyên rûn vedixwe û herweha girîsê jî carna pêve zêde dike.

Pisporekî nesaxiyên derûnî di vî warî de ragehand ku rewşa Mihemed Omer gellek normal e, û bi vî karî rewşa saxlemiya wî têk naçe. Mihemed Omer moralekî pirr baş heye û rojên xwe bi awayek xwezayî derbaz dike, lê nikare wê vexwarinê biterikîne.

## Ehmedînijad: Mûsewî û Kerûbî azad in!




**Mehmûd Ehmedînijad bi xatircemî ve ragehand ku di Îranê de mafê mirovan nahê binpê kirin!**

Mehmûd Ehmedînijad ku bona beşdariya di 66'emîn civîna Civata Giştî a NY serdana Niyoyorkê kiribû, di gotûbêja bi kanala ABC'ê re ew yek ret kir ku di Îranê de mafê mirovan hatibe binpê kirin, û derheq Mûsewî û Kerûbî jî ragehand ku ew ne girtî ne, û jiyana xwe ya rojane derbas dikin. Wî herweha di bersiva pirsek di warê dadgehîkirina Mûsewî û Kerûbî de ragehand ku ez li karê Dezgeha Dadweriyê de destêwerdanê nakim, û di Îranê de dadwer serbixwe ne.

Ehmedînijad derbarê azadkirina her du çiyagerên Amerîkayî de jî got:"Di rastî de wan yasa binpê kirine û eva yasa ye ku wê li ser qedera wan biryara daviyê bide ne ez". Rojekê piştî wan axvtinên Ehmedînijad hate ragehandin ku her du çiyageran Tehran bi cî hêlan û rû li Emanê kirin.

Dezgeha Dadweriya Îranê piştî gellek kêşeyan di encam de roja Çarşemiyê her du çiyager azad kirin.

## Di tewaya xwendegehan de wê nimêj bibe zorî



**Birêveberê giştî yê perwerdeya dewleta Ehmedînijad ragehand ku ji niha pêve nimêjkirin di xwendegehên qonaxên navendî û paşnavendî de bû îcbar. (neçarî)**

Li gorî nûçeyan Menûçêhr Fezlî Xanî, birêveberê giştî ê perwedeyê ragehand ku di programa heftiyane ya dersxwanan de divêt 20 deqe ji bo nimêj xwandinê bihê danîn.

Berpirsyarên rejîma Îranê vê biryarê di çarçoveya geşepêdana çanda nimêjê di civakê de cih didin, û ragehandin ku ew biryar wê bi awayekî micid bihê şopandin.

## Ji Artêşa 20 milyonî bo rizgariya Kerbelayê heya artêşa 10 milyonî bo dagîrkirina Înternetê!!!




**Rejîma Îranê dixwaze ku bona rikeberiya li hemberî şerê nerm de besîcek 10 milyonî pêk bîne.**

Xulam Reza Celalî, Serokê Saziya Pedafenda "Xêyrê Amêl" a Îranê eşkere kir ku Îran dixwaze ji riya 10 milyon besîciyan ve, 10 milyon wêblagan bixîne kar, heta ku bikaribe bi çêkirina torên înternêtî ên xweyî, întêrnêtê bi tewahî bixe bin destê xwe de, û bi vî awayî li hemberî şerê nerm de bisekine.

Hêjayî basê ye ku di destpêka şoreşa gelê Îranê de, Xumênî, avakirina artêşek 20 milyonî ji bo dagîrkirina Kerbelaye pilan kiribû, û niha piştî derbasbûna pitir ji 30 salî bi ser vê şoreşê de, rayedarên rejîm bîr ji avakirina artêşek 10 milyonî bona dagîrkirina înternêtê dikin!!!

